ÇAPA EWROPA
RÛDAW
ROJNAMEYA KURDÊN DIYASPORA



*Nazdar:* *Tenê li Rûdaw dinêrim*

» 9



# Şam ket hedefê

3»

Rojavayê Kurdistanê




## Pêncşemê êriş?

Hejmar / Nr. 213
29 Tebax / August 2013



| | | |
|---|---|---|
| Deutschland | 1,50 | Euro |
| Österreich | 1,50 | Euro |
| Belgium | 1,50 | Euro |
| Danmark | 15,00 | DKK |
| France | 1,50 | Euro |
| Nederland | 1,80 | Euro |
| Norway | 15 | NOK |
| Schweiz | 2,70 | CHF |
| Sverige | 21,00 | SEK |

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

## Bûkê xesû kişand pêş dadgehê

» 7



Osman Ocalan:

## 90% tiştê ku li Rojava diqewime bîr û baweriya Cemîl Bayik e

» 10 / 11






# Tafel xwarinên demborî dide penaberan

**Osnbruck (Rûdaw) -** Duşema 19ê Tebaxa borî malbateke kurd ji Rojavayê Kurdistanê, ku nû mafê penaberiyê wergirtiye û li avahiyeke kevnar ya penaberan li bajarê Almanya Osnabrucke dijî, weke her Duşemê dîsa diçe ba rêxistina alîkariya xwarinê ya bi navê "Tafel", ji bo ku para xwe ji xwarinê bistîne. Lê ew xwarin ne her dem di rewşeke baş deye.

Dema Yekşema borî xizmeke vê malbatê serdana wan dike, malbat bêyî ku haya wê jê hebe qotîkeke nîvişk ya demborî dide wê xizma xwe. Xizma ku pê dihesê ku dema nîvişk derbas bûye, ji Rûdawê re ragihand ku Tafel hin caran nanê kofikî yan jî nanê li ber kofikîbûne dide penaberan, her wisa xwarinên demborî jî belav dikin. Vê malbatê heftiya borî 2 qotîkên nîvişk ya markaya Lätta ya ku ji roja 23yê Tîrmehê ve dema başbûna wan derbas bûye û qotîkeke krêma patatan jî, ku ew jî ji 15ê Tebaxê ve dema wê boriye, wegertibûn.

Tafel rêxistineke almanî ya xêrxwaziyê ye û ji sala 1993yê de aktîv e, ew wek banka xwarinê ji bo kesên belengaz kar dike, mirov bi dayîna pereyên hindik dikare gellek sebze, fêkî û xwarinan werbigire.

# Şagirtên zimanê zikmakî di nava zehmetiyê de ne



Şagirtên zimanê kurdî li dibistaneke seretayî li bajarê Bremenê

**Köln (Rûdaw) -** Li eyaleta Baden-Württemberg a Almanyayê 42 hezar şagirtên dibistanan yên esilbiyanî tevlî dersên bijarta yên zimanê zikmakî dibin. Ji ber êdî hêdî hêdî li eyaletê pergala demên dibistanê tê guhertin, bedevkê karê întegrasyonê yê Partiya Keskan, Daniel Lede Abal, daxwaz kir ku guhertin di pergala zimanê zikmakî de jî werin kirin.

Li eyaleta Baden-Württembergê dersên zimanê zikmakî li derveyî wextê dibistanê, ango piştî nîvro, tên dayin. Li gor destûra eyaletê, konsolgeriyên welatan naverok û birêveçûna dersan birêxistin dikin. Karê dibistanan jî ji dayina polên dersê pêktê.

Lê belê ji ber ku niha li eyaletê êdî gellek dibistan li şûna danekî, herdu danan dersê didin, pirsgirêka ka wê dersên zimanê zikmakî kengî werin dayin rû dide. Li ser vê yekê parlementerê Partiya Keskan yê eyaleta Baden-Württembergê, Daniel Lede Abal, bang kir ku pergala dayina zimanê zikmakî were guhertin. Wî herwiha xwest ku dersên zimanê zikmakî wekî beşek ji dersên asayî yên dibistanê werin qebûlkrin û dayin.

Li eyaleta Baden-Württembergê bi dehhezaran Kurd jî dijîn lê belê ji bo zarokên Kurdan heta niha dersa zikmakî nehatiye dayin. Sedema yekemîn ya vê yekê ew e ku dersên zimanê zikmakî bi peymaneke di navbera sefaretên welatan û wezareta perwerdeyê ya eyaletê de tê birêvebirin. Sedemeke din ya bingehîn jî, ji ber ku heta niha rêxistin û saziyên Kurdan di vê hêlê de xebateke taybet li eyaleta Baden-Württembergê birêve nebirine, ti gavên berbiçav di vî warî de nehatine avêtin.

## Mêvandariya wan nehat qebûlkirin...

# Pevçun derket



**Koln (Rûdaw) -** Şeva Yekşema borî polîsê bajarê Almanya Heilbronnê mudaxeleyî pevçûneke di navbera birêveberên xwaringehekê û çend ciwanên kurd de kirin. Dema derengî şevê hinek ciwanên kurd xwestin li bajarê Heilbronnê bikevin xwaringeha Hip Island, ya ku binê wê bi qûmê hatiye raxistin, destûra wan a ketina hundir nehat dayin. Li ser vê yekê jî dûre pevçûn derket.

Li gor agahdariyên ku polîsên Heilbronnê belav kirin, herçar ciwanên ku çûyîna wan a Hip Islandê hatibû astengkirin, piştre bi komeke mezin vegeriyan pêşiya heman cihî. Dûre jî heman ciwanan ji pişta otomobîlan kevir avêtin parêzvanê xwaringehê. Digel agahdariyên şêlo, polîs diyar kir ku di encama kevirbaranê û pevçûna piştî wê demê ya di navbera ewlekariya xwaringehê û ciwanan de, gellek kes birîndar bûn. Herwiha ji koma ciwanên kurd jî du kes hatin birîndarkirin û li gor heman agahdariyan, wan tedawiya ji wan re hate pêşniyarkirin ji red kirine. Ji hêla din ve rêwengiyekî ku hay ji bûyerê nebû jî bû mexdûr û bi giranî birîndar bû û ew rakirin nexweşxaneyê.

Derbarê bûyerê de polîs diyar kir ku lêkolîna wan berdewam dike û bi giştî 12 wesayîtên polîs, wesayîteke ku segên perwerdekirî tê de û sê ambûlans çûne cihê bûyerê. Lê derbarê sedemên li pişt bûyerê de, ti agahiyên piştraskirî bi dest neketin.

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
ako@rudaw.net

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nesredin@rudaw.net

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Rêveberî û belavkirin**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-58 87 22 80
Fax: +49 (0) 221-58 87 22 82
info@rudaw.eu
www.rudaw.net / www.rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

## Tevî ku berpirsên bikaranîna çekên kimyewî îspat nebûne jî

# Amerîka ji bo mudaxeleya serbazî amade ye



Reşad Ozkan

Li gor serokê Amerîkayê Barak Obama, rejîma sûrî çêkên kimyêwî li dijî xelqê sivîl bikaranîn û ev yek nayê qebûlkirin. Rojnameya Washington Post jî di nav de, gellek rojnameyên navdar yên amerîkî û brîtanî dinivîsînin ku Amerîka xwe amadeyî mudaxeleyeke serbazî bo ser Sûriyê dike. Êrişên ezmanî dikarin pênçşemê destpêbikin.

Li gor wan raportan, Amerîka bi Îngilîstanê re plan dike ku van rojan êrişî navendên rejîma Sûriyê bikin, lê diyar dikin ku li gor berpirsên amerîkî armanca Amerîkayê ne hilweşandina rejîma Sûriye ye, lê cezakirina bikaranîna çekên kîmyewî ye. Ji bo vê jî wê Amerîka ji Derya Spî ji keştiyên bin avê bi fûzeyan êrişî hinek cihên stratejîk bike, wekî cihên leşkerî, balafirgeh û navendên ragihandinê.

Li gor raportên gellek dezgehen navdar, êrişa çekdarî dikare vê pêncşemê destpêbike û wê 3 anjî 4 rojan dom bike. Washington dixwaze stratejiya ku sala 1999ê li Kosovayê û 2011ê li Libyayê ceribandî bikarbîne. Li wan herdu welatan Amerîkayê ji rojhilatê Derya Spî bi fûzeyên "Tomahawak" ji keştiyên bin avê erîş kiribû. Bihayê her fûzeyeke "Tomahawak" 1 milyon û 500 hezar Dolar e.

### Serxet di bin metirsiyê de ye

Li gor çavderên eskerî û siyasî, eger Nato erişî rejîma sûrî bike, metirsî heye ku rejîma sûrî bixwaze bi erîşa çekên kîmyewî tola xwe ji Tirkiyeyê hilîne. Ev jî tê wê wateyê ku gund û bajarên li ser xetê yên Bakurê Kurdistanê di bin metirsiyê de ne.

Beriya 3 mehan jî Esad li Rojavayê Kurdistanê çekên kimyewî bikaranîbû, lê kesekî dengê xwe dernexistibû. Wekî komkujiya Helepçeyê cihanê li Rojava jî çav û guhên xwe girtin. Heta ku rejîma Sûriyê, anjî komên serhildêr, çekên kimyewî li Şamê bikarneanîn, welatên rojava şiyar nebûn.

Niha komîsyoneke lêkolînê ya Neteweyên Yekbûyî li Sûriyê ye û bûyera êrişa kimyewî lêdikolê. Lê çavdêrên siyasî di wê baweriyê de ne ku Amerîka û hevalbendên wê wê bêyî biryara Neteweyên Yekbûyî jî erişî rejîma sûrî bikin, Rûsya, Çîn û Îran jî wê mecbûr bibin ku temaşeyî şer bikin. Lê eger welatên rojava dest bi şerekî li hemberî rejîma Esed bikin, PYD û Kurdên Rojava wê çi bikin? Bi îhtimaleke pirr mezin ewê ligel Amerîkayê li dijî rejîma Esad bin.

### PYD: "Em girîngiya Tirkiyeyê dizanin"

Hevserokê Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD) Salih Muslim Yekşema borî li Berlinê di civînekê de ji bo ajansa reuters peyivî û got : "Em dixwazin di pêşeroja Sûriyê de cih bigirin, ji bo vê jî em girîngiya Tirkiyeyê dizanin. Ji bo vê jî me di serî de got ku diyalog girîng e." Ev gotinên Muslim nîşanên guhertina siyaseta partiya wî ne. Eger Amerîka erişî Sûriye bike, di destê PYDê de opsyonek têne heye, ew jî ku li dijî rejima Esad cihê xwe li kêleka Amerîka û Tirkiyeyê bigire. Teqîn û pevçûnên nû yên di navbera şervanên PKK/PJAK û arteşa Îranê de dibe ku nîşanên vê yekê bin.

### Davutoğlu bi Westerwelle re civiya

Wezîrê derve yê Tirkiyeyê Ahmet Davutoglu jî roja 22ê vê mehe ji bo serdanekê li Almanyayê bû. Davutoglu ji aliyê hempîşeyê xwe Guido Westerwelle ve hat qebûlkirin. Herdu wezîran daxuyaniyek dan çapemeniyê û wezîrê tirk Davutoglu ji bo rojnamevanan got: "Rejîma sûrî xelke xwe bi çekên kîmyewî dikuje, heta niha bi hezaran kes ji aliyê rejimê ve hatine kuştin. Divê em rê li ber komkujiya gelê sûrî bigirin. Tirkiye ji bo erîşa li dijî rejima sûrî amade ye. Eger Amerîka û hevalbendên wê bixwazin êrişî Sûriyê bikin, emê jî cihê xwe ligel Amerîkayê bigirin."

### Almanya li dijî mudaxela leşkerî ye

Wezîrê derve yê Almanyayê Guido Westewelle di axaftina xwe de mesafeyeke mezin xist navbera xwe û Davutoglu û wiha peyivî: "Almanya dixwaze tekiliyên xwe yên aborî û siyasî di ser Tirkiyeyê re bi Rojhilata Navîn re xurt bike. Em û Tirkiye ev sed sal in bi hev re dost in. Lê belê Almanya şerekî li dijî Sûriyê naxwazi û em dixwazin rejîma Esad bi awayekî aştiyane desthilatdariyê bi muxalefetê re parve bike. Bila kesek hewl nede ku me bikişîne nava şer." Ji ber ku meha pêş li Almanyayê hilbijartinên parlementoya federal tên lidarxistin, ne hikûmeta almanî û ne jî ti partiyên almanî naxwazin mudaxeleke li dijî Sûriyê biparêzin û ji bo ku dengan winda nekin, li dijî destwerdaneke ji derve derdikevin.

Ji aliyê din ve jî wezareta derve ya Almanyayê li ser malpera xwe ya înternetê welatiyên xwe hişyar dike ku bila welatiyên alman xwe nezikî sînor, bajar û gunden li ser sînorên Sûriyê nekin. Ev jî dikare weke nîşanek were şîrovekirin ku Almanya jî li benda êrişeke di demeke nêzîk de ye.

## ENKS tevlî opozisyona Sûriyê bû



**Stembol (Rûdaw) -** Şanda Encûmena Niştimanî ya Kurd li Sûriyê (ENKS) bi serokatiya Hemîd Derwêş û endametiya Ebdulhekîm Beşar, Îbrahîm Biro, Mistefa Sîno û Hoşeng Derwêş wesîqeya rêkeftina di navbera wan û Hevpeymana Niştimanî ya Sûrî de roja sêşema borî li Stembolê îmze kirin.

Sekreterê Partiya Yekîtî ya Kurdî li Sûriyê, Îbrahîm Biro, ji Rûdawê re ragihand ku wan li bajarê Stembolê rêkeftin li ser çareserkirina doza kurdî û tevlîbûna ENKSê di Hevpeymana Niştimanî ya Sûriyê de bi îmze kiriye.

Biro destnîşan kir ku ji aliyê Encûmena Niştimanî ya Kurdî her yek ji Hemîd Derwêş, Ebdulhekîm Beşar, Îbrahîm Biro, Mistefa Sîno û Hoşeng Derwêş, ji aliyê Hevpeymaniya Niştimanî ya Sûriyê jî Salim el-Muslit, Ekrem Esaf, Nezîr el-Hekîm, Enes el-Ebdê û bi amadebûna serokê Hevpeymaniyê Ehmed el-Cerba ew rêkeftin hatiye îmzekirin.

Ev çend rojin Encûmena Niştimanî ya Kurdî û Hevpeymaniya Niştimanî ya Sûriyê danûstendinan dikin, heya ku roja şêşemê gihiştin rêkeftinê. Giringtirîn xalên wê rêkeftinê ev in: mikurhatina destûrî bi gelê kurd li Sûriyê, çareserkirina doza kurdî û rakirina hemû projeyên nijadperest li dijî Kurdan, herwiha qerebukirina wan û







navê fermî yê Sûriyê jî li şûna Komara Erebî ya Sûriyê dibe Komara Sûriyê.

Piştî ku nûçeya îmzekirina rêkeftinê belav bû, çendîn berpirsên PYDê diyar kirin ku nabe ENKS bi tena serê xwe ligel hin aliyên opozisyona Sûriyê rêkeftinan îmze bikin. Endamê Desteya Bilind a Kurd û yek ji serkirdeyê TEV-DEMa ser bi PYDê, Aldar Xelîl, di daxuyaniyekê de destnîşan kir ku hewldanên Encûmanê Niştimanî ya Sûriyê bi hin partiyên opozisyona sûrî re ji bo yekîtiya Kurdan xetere ne û wiha got: "Ev hewldanên îtifaqa ku di navbera hin hêzên kurd û opozisyonê de çêdibin hewldanên li derveyî Peymana Hewlerê ne û divê her rêkeftinek bi navê Desteya Bilind be."

RÛDAW



## Hevserokê KCK, Cemîl Bayik:

# Deadline 1ê Îlonê ye... *û paşê?*

**Hewlêr (Rûdaw) –** Hevserokê konseya rêveberiya Koma Civakên Kurdistanê (KCK) Cemîl Bayik gef xwarin ku êdî proseya aştiyê dirêj nakin. Herwiha vekişandina gerîlla bo Başûrê Kurdistanê radiwestîin, eger heta roja yekê Îlonê, wek derfeta dawî, gavên rast ji aliyê hikûmeta Tirkiyeyê ve neyên avêtin.

Roja yekê Îlonê dawiya vê moletê tê, ku KCKê wek roja dawî ji bo cîbicîkirina qonaxa duyem a proseya aştiyê ragihandibû. Qonaxa duyem, weke ku berpirsên KCKê dibêjin, çaksaziya yasayî û azadkirina girtiyên dosyeya KCKê li xwe digire. Eger na, ev prose dixitime. Qonaxa yekem a vê proseyê bi vekişandina gerîllayan ber bi baregehên xwe li çiyayên Qendîlê destpêkiribû. Di demekê de ku serokatiya KCKê dibêje pirraniya gerîllayên li Bakurê Kurdistanê vekişiyan, berpirsên dewleta Tirkiyeyê gumanê ji vê dozdariyê dikin û dibêjin tenê 15 ji sedî ji gerîllayan vekişiyane, beramber wê jî bi hezaran tevlî rêzên PKKê bûn.

Cemîl Bayik di daxuyaniya xwe ya dawî de êrîşî ser serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdogan kir û got: "Heta niha ti nexşeya çareseriyê xuya nekiriye. Di van rojan de jî Erdogan û AKPê dest bi propagandayê kirine ku PKKê qonaxa vekişandina gerîlla wek pêwîst cîbicî nekiriye. Yan behsa wê yekê dikin ku PKK li Bakurê Kurdistanê asayişa navçeyî pêk aniye û şervanên nû tevlî PKKê dibin, 15 ji sedî jî ji gerîllayan vekişiyane. Erdogan dixwaze wiha ji raya giştî re diyar bike ku ew çareseriyê dixwazin û PKK kelem e. Ewa ku ketiye ser milê PKKê me cîbicî aniye. Di qonaxa yekem de jî gerîlla vekişiya. Me rê li ber şer û kuştinê girt. Lê hikûmeta Tirkiyeyê ti gav neavêtiye. Di demekê de ku divê di 1ê Îlonê de qonaxa duyem destpêbike, girtiyek jî bernedaye, operasyon berdewam in. Berdewamiya firokeyên cengî û bêpîlot heye. Leşkergehên nû li Bakurê Kurdistanê ava dike. Di siyaseta guhertina cografyaya Kurdan de berdewam in. Kar bi raporta Komisyona Aqilmendan nabe û neçûye parlemantoyê. Ti kar li ser pêkanîna van 8 komisyonan nebûye ku birêz Ocalan pêşniyar kiriye."

Lewma Cemîl Bayik ragihand: "Wek PKK, eger ev siyaseta mandelê berdewam be, em nikarin li ser vê qonaxê berdewam bin. Êdî em nikarin bi vî awayî berdewam bin. Eger heta 1ê Îlonê gavên rast xuya nekin, wek PKK em jî vêya ku me destpêkiriye radiwestînin."

### "PKK amade ye"

Hevserokê konseya KCKê derbarê vê yekê de, ku gelo çi rêyê digirin, wiha got: "Proseya vekişandina gerîlla bo Başûrê Kurdistanê em radiwestînini, heta ev gerîllayên ku vekişiyane bo Başûr vegerin bo Bakurê Kurdistanê. Ev jî mafê me ye. Eger Tirkiye çareseriyê naxwaze û şer dixwaze, PKK jî xwe diparêze. Şer, an her tiştekî din, em jê re amade ne. Eger Tirkiye aştiyê dixwaze, bila gavan bavêje. PKK amade ye. Lê dema siyaseta xapandin û hewldanên ku ji bo hilbijartinan sûdê ji rewşê werbigire û berjewendiyên xwe, PKK rê nade vê yekê."

Piştî sala 1993yê, bi hêviya çareserkirina kêşeya kurdî û ragirtina şerê çekdarî, ku 15ê Tebaxa 1984ê destpêkiribû, PKKê çend caran agirbesta yekalî ragihand, lê ev agirbest negihiştin encamê. Piştî girtina rêberê PKKê Abdullah Ocalan di 15ê Sibata 1999ê de, çareseriya kêşeya kurdî li Bakurê Kurdistanê bêtir ket rojevê. Yekê Tebaxa 1999ê Ocalan pêşniyara "komara demokratîk" ji Îmraliyê ragihand. Doz jî li PKKê kir ku hêzên çekdarî vekişîne derveyî sînorê Tirkiyeyê. Bi vê jî agirbesteke neragihandî destpêkir, ku heta sala 2005ê domand. Beriya agirbesta Newroza îsal jî konseya serokatiya PKKê di Pûşbera 2010ê de agirbesteke din ragihandibû ku ev jî hevdem bû ligel danûstandinên veşartî yên ku di navbera PKKê û dezgeha îstixbarata Tirkiyeyê MITê de li Osloyê dihatin meşandin.

### Serdana Ahmed Turk û Ayla Akat destpêk bû

Li gor PKKê, di van danûstandinan de herdu alî gihiştin peymanekê, lê piştî hilbijartina 11ê Pûşbera 2011ê, bi taybetî piştî êrişa gerîllayên PKKê di 14ê Tîrmeha heman salê de li ser navçeya Farqînê, ku bû sedema kuştina 13 leşkeran, dawiya vê proseyê hat û qonaxek ji şer û pevçûna xwînî ligel xwe anî. Vê yekê jî wiha kir hemû pêwendiyên Ocalan bi derve re bên qutkirin, vê qonaqê jî ji 14ê Tîrmeha 2011ê heta 3yê Çileya 2013ê berdewam kir. Di vê demê de herdu parlementerên kurd, Ahmed Turk û Ayla Akat, piştî demeke dirêj yekemîn car dîsa serdana Îmraliyê kirin û Ocalan dîtin. Vê hevdîtinê careke din, lê bi awayekî ji berê xurttir, hêviya çareseriya kêşeya kurdî vejand.

Ev serdan piştî wê yekê pêkhat ku beriya wê danûstandin di navbera MIT û Ocalan de li girava Îmraliyê pêkhatibûn û gihiştibûn qonaxekê. Di Newroza îsal de jî Ocalan bîrokeya xwe di nameyekê de, ku li Amedê hate xwendin, bo raya giştî ragihand. Yekemîn qonaxa bîrokeya Ocalan, ku bi proseya çareseriya aştiyane ya kêşeya kurdî tê binavkirin, di 8ê Nîsanê de, di bin navê vekişandina gerîlla bo derveyî sînorê Tirkiyeyê, destpêkir. Vê gavê li nav Tirkiyeyê mezintirîn piştgirî bidest anî. Lê gellek dem tê re neçû, hikûmet û PKK dest bi tawanbarkirina hevdu kirin.

Di dema borî de hikûmeta AKPê pakêta çaremîn a çaksaziya yasayî bire parlementoyê. Lê PKKê rexne li vê pakêtê kir û ragihand ku ev ne di asta çaverêbûnên wan de ye. Herwiha nabe heyvanê pêşvebirina vê proseyê. Cemîl Bayik di vî warî de dibêje "Hikûmet ji demokrasiyê ditirse, beramber helwesta xelkê ji bo demokrasiyê dilteng bûye, lewma li şûna pakêta demokrasiyê pakêta xapandinê amade dike."

Bayik di van rojên dawî de, li Qendîlê pêşwaziya şandeke rojnamevan û çavdêrên siyasî yên tirk kir. Endamê Komisyona Aqilmendan Celaledîn Celal, ku endamê vê şandeyê bû, di daxuyaniyekê de ji bo rojnameya Taraf a turkî de helwesta Cemîl Bayik bi vî awayî şîrove kir: "Eger ev prose bi tevayî bigihije rawestandinê, em venagerin bo şer. Lê em vekişandina gerîllayan radiwestînin. Dibe ev gerîllayên ku vekişiyane vegerin cihên xwe yên berê, em penayî hemû şêwaz û berberiyên sivîl dibin, bi serkêşiya sivîl em hikûmetê neçar dikin ku gavan bavêje." Lê kesên nêzîkî hikûmeta Tirkiyeyê van tometên PKKê red dikin.

Parlementerê kurd yê ser bi partiya desthilatdar AKPê Galîp Ensarioglu gellekî bi xurtî vê gotegotê red dike, ku dibêjin dibe ev prose raweste û got: "Em ti nîşanê nabînin ku ev prose ber bi binbestbûnê ve çûbe. Ewê ku dibêje ev prose ber bi binbestbûnê ve diçe, hêviya wî li ser binbestbûna proseyê heye." Ensarioglu berevajî van gotegoten wiha dibîne ku bi kar ev prose ber bi pêş ve diçe: "Rast e, hikûmet û PKK hevdu tawanbar dikin. Lê ev prose berdewam e û amadekarî ji bo ber bi pêşbirinê ve dibe. Ewên ku çavê wan bi vê proseyê bar nabin, dibêjin gihiştiye qonaxa rawestandinê."

### "Bi guşaran hikûmet gavan navêje"

Li beramber gotina vî parlementerê AKPê, serokê Komeleya Mafên Mirov û Mezlûman ya Amedê (Mazlumder), Serdar Bulent Yilmaz, wiha dibîne ku her ligel destpêkirina vê proseyê nêrînên serokên PKKê nakok bûn ligel naveroka proseyê. Di vî warî de ji Rûdawê re got: "Ev nerîn piştgiriya moralî, ya ku pêwîst e ji proseyê re bibe, dişikîne."

PKK berdewam dubare dike ku AKP çareseriya kêşeya kurdî jidil naxweze. Lê li gor Yilmaz, ezmûna 10 salên hikûmeta AKPê nimûneyeke berevajî gotinên PKKê derdixîne: "Hikûmetê di 10 salên borî de ji ezmûnkirina kêşeya kurdî ewqas puan wergirtiye, heta PKK baweriyê pê bike. Di 10 salên borî de, tevî çendîn hewlan jî, dîsa hikûmetê ji bo nehiştina şûnmayên şerê 30 salî gav avêtin."

Ev berpirsê Mazlumder wiha dibîne ku heta hikûmet cemawer û dengderan amade neke, bi rastî gavan navêje, lê daxuyaniyên PKKê vê rewşê asteng dikin: "PKK dixwaze bi vê daxuyaniyê bêje bi guşara hêza çekdarî min hikûmet neçar kiriye ku gavan bavêje. Lê ev dibe sedema wê yekê ku hikûmet gavan navêje."

Serdar Bulent Yilmaz pesnê helwêstên Ocalan dide û dibêje: "Serokên PKKê nerêkiyê bi hikûmetê re dikin. Ew daxuyaniyên ku didin bêhna xirabbûna proseyê jê tê. Helwesta Ocalan li beramber vê proseyê xwedî berpirsyarî ye. PKK hewl dide ku dozdariyên rêxistinî wek dozdariya civaka kurdî nîşan bide. Eger na, baweriya civaka kurdî li Tirkiyeyê bi vê proseyê heye."



## Wekîlê koma BDPê, Îdrîs Baluken:

# Hikûmet xwedî helwesteke xapînok e


Wêne: Rûdaw

Îdrîs Baluken (milê rastê) ligel hevkarê Rûdawê Agit Boztemur (li aliyê din yê maseyê)

Wekîlê koma BDPê di meclisa Tirkiyeyê de Îdrîs Baluken yek ji kesên ji nêz ve haya wî ji birêveçûna hevdîtinên çareseriya pirsgirêka kurd li Bakurê Kurdistanê û Tirkiyeyê heye. Baluken pirsên Rûdawê yên derbarê rewşa pêvajoyê de bersivandin.

**Rûdaw: Behsa paketa demokrasiyê tê kirin. Di vê paketê de ji bo Kurdan çi heye?**

**Îdrîs Baluken:** Bi giştî sê hêlên hevdîtinan yên di navbera dewletê û birêz Ocalan de, yên di destpêka sala 2012ê de destpêkirine, hene. Ya yekemîn, xwevekişandina gerîllayên PKKê ye, ya duyemîn avêtina gavên demokrasîbûnê û ya sêyemîn jî pêvajoya asayîbûnê ye. Wekî hûn dizanin, PKKê banga birêz Ocalan ya Newroza îsal nirxand û ji meha Gulanê û pê ve dest bi vekişînê kir. Bi vekişînê re qonaxa duyemîn destpêkir û zemîna gavavêtina hikûmeta AKPê ava bû. Qonaxa duyemîn ya ku pêwist e hikûmet bike, sererastkirinên yasayî yên ku wekî paketa demokrasîbûnê tên destnîşankirin in. Hem serokwezîr û hem jî endamên hikûmetê gellek caran diyar kirin ku xebata paketa demokrasîbûnê dewam dikin lê hê jî daxuyaniyek nehatiye dayin. Ji bilî çend tiştên di çapemeniyê de derketin, hê jî nediyar e ka çi di wê pakête de heye. Lê belê me wekî BDPê, li ser paketa demokrasiyê ji bo demokrasîbûna Tirkiyeyê û berfirehkirina azadiyan û derbarê çareserkirina pirsgirêka kurd de, hem dîtinên xwe ji raya giştî û hem jî ji hikûmetêre diyar kirin. Rakirina zagona li dijî terorê, rakirina maddeyên antîdemokratîk, rakirina dadgehên taybet, di destpêkê de daxistina benda hilbijartinê û alîkariya xizînê, demokratîkkirina zagona hilbijartinan û ya partiyên siyasî, rakirina kelemên li ber xwebirêxistinkirina ramanî û derbirînî û serbestberdana nêzîkî deh hezar girtiyên ji ber ramanên xwe yên siyasî ji di nav de, divê ji gellek hêlan ve di vê paketê de sererastkirinên zagonî werin kirin.

Dîsa guherîna pênaseya hemwelatîbûnê ya di makezagonê de, rakirina astengiyên li pêşiya zimanê zikmakî, li şûna birêvebirineke teng ya navendî, xwebirêvebirina ji cih, rakirina astengiyên li dijî baweriyan, ji bo welat bibe demokratîk, divê ev babet hemû di bin destûra bingehîn de werin misogerkirin. Divê em dîsa bînin zimên ku hikûmet derbarê paketa demokrasiyê de xwedî helwesteke xapînok e. Bêcidiyetî û bêsamîmiyetiya hikûmetê ya derbarê demokrasiyê û çareserkirina pirsgirêka kurd de dibe sedema birêveçûneke nebaş ya qonaxên pêvajoya çareseriyê. Ji ber vê çendê divê hemû derdor zextê li hikûmeta AKPê bikin, ji bo ku sererastkirinên di pakêta demokrasiyê de zêde berfireh bin.



*Wekîlê koma Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) di meclisa Tirkiyeyê de û parlementerê bajarê Çewliga Bakurê Kurdistanê, Îdrîs Baluken, di sala 1976ê de li Çewligê hatiye dinê û dibistan jî li heman bajarî xwendine. Piştî Baluken beşa bijîşkiyê ya Zanîngeha Enqerê xwend, ew bû pisporê tuberkulozê. Wî ji bilî bijîşkiya li nexweşxaneyên cuda yên Enqere, Çewlig û Amedê, birêveberiya saziyên tibê jî kiriye.*

**Wê çi bi meseleya benda hilbijartinê ya ji sedî 10 bê?**

Benda 10 % ya hilbijartinê li Tirkiyeyê kelemeke herî mezin ya li pêşiya pêşketina demokrasiyê ye. Li Tirkiyeyê ji bilî hikûmetê, hemû derdor hemfikir in ku divê bend dakeve. Lê ji ber AKPê demokrasî bi xwe nedaye qebûlkirin û ji ber hesabên wê yên rantê yên siyasî, em dibin şahidê wê yekê ku ew dibêjê ewê bendê ji sedî 10ê danexînê. Wekî BDP, me hem di komisyona nivîsandina makazagonê de û hem jî di guftûgoyên din de du alternatîf dane pêş. Ya yekemîn ew e ku bend dakeve ji sedî 3 û xala duyemîn jî, dema partiyek li pênc herêman bibe yekemîn, pêwist e pirsgirêka wê ya aliqandina bendê nemîne. Herdu pêşniyar jî ji bo demokrasiya Tirkiyeyê pêşniyarên gellekî erênî ne. Bi pêşniyarên bi vî rengî û bi têkoşîna me ya siyaseta demokratîk em dixwazin gavan ji bo daxistina bendê bi AKPê bidin avêtin.

**Heta niha hûn derbarê çi de bi AKPê re axivîne û we di kîjan xalan de li hev kiriye?**

Ji ber ku desthilatdariya AKPê parçeyekî pêvajoya çareseriyê ye, em derbarê gavên ku ji bo lihevhatina civakî werin avêtin danûstandinan dikin. Lê peymaneke ku li ser mijarekê hatibe girêdan nîne. Tenê ji bo pêvajoya çareseriyê bi pêş bikeve, gavên ku alî bavêjin hene. Pêwist e ev gav jî dualî werin avêtin.

**Hilbijartinên pêşiya me ji bo têkoşîna me ya azadiyê û pêvajoya nû referandûm e.**

**Hûn di hilbijartinên pêş de li benda encameke çawe ne?**

Hilbijartinên pêşiya me ji bo têkoşîna me ya azadiyê û pêvajoya nû referandûm e. Girîng e û dîrokî ye. Emê bi vê giringiyê beşdarî hilbijartinan bibin. Armanca me ew e ku em trenda xwe ya siyasî, ya ku ev demeke dirêj e bilind bûye, hê jî bilindtir bikin. Li gor rapirsînên ji raya giştî û anketan, ev trenda me gellekî bi pêş dikeve. Ku zagonên antîdemokratîk jî werin guhertin, trenda me ya bilind bûyî wê bi awayekî erênî dopîng bibe. Di bin hemû şertan de emê wekî bloka demokrasî û azadiyê di hilbijartinên pêş de bi awayekî serkeftî ji hilbijartinan derkevin.

**Rola we di hevdîtinên di navbera MIT-AKP-Ocalan de çi ye? Derbarê kîjan babetan de nûnerên BDPê bi Ocalan re hevdîtinan pêk tînin?**

Eger hevdîtinên aştiyê wekî hevdîtinên di navbera MIT û Ocalan de werin destnîşankirin, wê nêzîkbûneke şaş ya di vê bareyê de be. Di hevdîtinên aştiyê yên di navbera şandeya dewletê û birêz Ocalan de, em wekî BDP bi pêşniyarên xwe piştgiriya pêvajoyê dikin. Em herwiha xwedî rola ku aliyekî pêvajoyê ne û ji bo pêşvebirina pêvajoyê bi gel re têkoşînek demokratîk birêve dibin.

Nûnerên BDPê û birêz Ocalan di destpêkê de hevdîtinan derbarê pêvajoya çareseriyê, siyaseta Tirkiyeyê, siyaseta Rojhilata Navîn û siyaseta cihanê de pêk tînin. Bêguman ji bo qonaxa duyemîn ya pêvajoyê, wate sererastkirinên zagonî û makezagonî, rasterast partiya me muxatab e û wê ev qonax bi xebatên partiya me şekil bistîne.

**Çi tişt baweriyê dide we ku pêşniyarên Ocalan dike ne pêşniyarên MITê ne? Bi baweriya we pêvajo çawe bi pêş dikeve?**

Em ne siyasetmedar û bizaveke siyasî ne, ku nû ji doh ve rêzdar Ocalan nas kiriye. Ev bi salan e em hem wekî sazî û hem jî wekî takekes bîreweriya birêz Ocalan ji nêz ve dişopînin û giringiyê pê didin. Ji ber vê çendê, ji hêla me ve ev qet ne pirsên ku em hêjayî nirxandinê bibînin in. Ji xwe şandên me ev demeke bi birêz Ocalan re rûbirû hevdîtinan pêk tînin. Dîtinên birêz Ocalan yên di çarçoveya avakirina rizgariya demokratîk, jiyana azad û nexşerêya ku dixwaze bike pratîkê, ne ji xebatên siyasî yên çend mehî pêk tên. Herkesê birêz Ocalan dişopîne, dizane ku ev derdora 20 salan e ew dixwaze temelê vê paradîgmaya siyasî bike jiyanê de.

Derbarê pêşketina pêvajoyê de ti xetimandin nîne. Di vê bareyê de bi taybetî rola birêz Ocalan gellek e. Lê belê bêsamîmiyetî û bêcidîbûna şanda dewletê û ya AKPê dibe sedema lawazbûna pêvajoyê û derengmayina wê. Divê ev helwest biguhere û ji bo vê çendê jî divê em amûrên zextê yên bi rêbazên demokratîk bikin dewrê.

**Derbarê serbestberdana Ocalan de bi hikûmetê re hevdîtin têne kirin?**

Bingeha hevdîtinên bi hikûmetê re li ser berfirehkirina azadî û demokrasiyê ye. Dema ev pêvajo bi ser bikeve, wê herkes azad bibe. Jixwe birêz Ocalan jî ne mehkûmekî ji rêzê ye. Ew di encama çesipandina neçareseriya pirsgirêka kurd ya ji hêla dewletê ve hatiye girtin. Em bawer dikin, wê çareserkirina pirsgirêka kurd, wekî herkesî, wê rêya ku ew jî bikeve nava gelê xwe de veke. Lê hevdîtinên taybet yên derbarê ku birêz Ocalan tenê serbest werê berdan nehatine kirin.

**Piştgiriyeke muhtemel ya Tirkiyeyê ji bo komên çeteyên mîna al-Nusra li Rojava bandorê li hevdîtinan dike?**

Desteka AKPê ya ji bo çeteyên al-Nusraya ku êrîşî gelê Rojava dike, dibe sedema bertekên hemû gelên li Rojhilata Navîn û ya gelê kurd û bêguman xwedî potensiyela bandoreke neyînî ya li ser hevdîtinane jî. Hem birêz Salih Muslim û hem jî me di hevdîtinan de aniye zimên ku desteka Tirkiyeyê ya ji bo çeteyan nêzîkbûneke neyînî ya siyaseta giştî ya Tirkiyeyê ye û helwesteke neyînî ye derbarê çareserkirina pirsgirêka kurd de.

*Hevpeyvîn: Agit Boztemur*

# “Divê krîmînalîzekirina Kurdan bi dawî bibe“



Sevim Dagdelen

Sevim Dagdelen (38) bi eslê xwe ji Erzîngana Bakurê Kurdistanê ye. Dagdelen endama Partiya Çep (Die Linke) e û ji 2005ê ve endama parlementoya Almanyayê ye. Ew di nava partiya xwe de pirranî bi pirsgirêkên koçberan ve mijûl e û derbarê siyaseta derve de jî çalak e. Di 22ê Îlonê de parlementoyeke nû li Almanyayê tê hilbijartin, Sevim Dagdelen jî ji bajarê Duisburgê li ser lîsteya Partiya Çep berbijar e.

**Rûdaw: Di hilbijartinên giştî yên Almanyayê de partiya we giraniya xwe dide kîjan mijaran?**

Partiya Çep îsal bi dirûşmeya "100 % Sosyal" tevlî hilbijartinên giştî dibe. Rewşa sosyal ya Almanyayê her diçe xirab dibe. Cudahiya navbera dewlemend û feqîran her diçe zêde dibe. Hejmara karkerên ku bi heqdestekî pirr kêm dixebitin gihiştiye 8 mîlyonan. Ev demeke dirêj e mehaniya teqawîtan zêde nebûye û ji ber vê çendê ew di nava hejariyê de dijîn. Partiya Demokratên Sosyal SPD û ya Keskan, ku berê bi bernameya ’Ajenda 2010’ bibûn desthilatdar, gel xizan kirin. Niha ew jî heman pirsgirêkan tînin rojevê. Lê ya wan tenê taktîkên hilbijartinê ne. Ji bo çareseriya pirsgirêkan tenê em rêbazên berbiçav pêşkêş dikin. Wekî mînak, em dibêjin divê seeta kar herî kêm bi 12 Euro be. Herwiha divê êdî şirket nikaribin karkeran bi kirê bidin şirketeke din.

**Hûn bawer dikin ku hikûmet were guhertin?**

Li gor rapirsiyan, Xiristiyanên Demokrat (CDU/CSU) dengên xwe zêdetir kirine û dengên SPD jî 23 % in. Guhertina hikûmetê girêdayî rewşa partiya lîberal FDP ye. Dengên FDP ji 5-6 % in. Eger FDP nikaribe bikeve parlementoyê, hikûmet jî wê biguhere. Niha dengên partiya me Die Linke wekî 8-9 % dixuyên. Em hewl didin ku dengên xwe zêdetir bikin.

**Partiya Çep dikare di encama hilbijartinan de bibe şirîkê hikûmetê?**

Em hewl didin ku bi hejmareke baş di parlementoyê de werin temsîlkirin. Me di hilbijartinên 2009ê de dengên baş wergirtin. Em hewl didin ku dengên xwe biparêzin. Esas em dixwazin pirsgirekên gel di parlementoyê de bînin ziman û zextê li hikûmetê bikin. Me di dema derbasbûyî de wisa xebat kir. Armanca me ne ew e ku em bi partiyên heyî re biben şirîk di hikûmetê de. Lewra wan partiyan heta îro siyaseteke li dijî berjewendiyên karkeran, teqawîtan û koçberan birêvebirine. Gava ew partî daxwazên me qebûl bikin, emê bi wan re hevkariyê bikin.

**Polîtîkaya we ya koçberiyê çi ye?**

Partiya Çep cothemwelatîbûnê diparêze. Dîsa pêwist e kesên ku ne hemwelatiyên Almanyayê ne jî, bikaribin beşdarî hilbijartinên herêmî û yên giştî bibin. Kesên ku zêdeyî pênc salan li Almanyayê dijîn jî, divê hem bikaribin hilbijêrin û hem jî werin hilbijartin.

**Kurdên li Almanyayê hê jî weke neteweyekê nayên naskirin. Siyaseta we ya di vê bareyê de çi ye?**

Partiya Çep li Almanyayê piştgiriya daxwazên Kurdan yên mirovî û siyasî dike. Em dixwazin qedexeya ku 20 sal in li ser PKKê hatiye danîn were rakirin û krîmînalîzekirina komelên Kurdan bi dawî bibe. Partiya Çep heta niha di vê bareyê de gellek hewl dane lê mixabin heta niha negihiştiye encamekê.

**Piştî vekişandina gerîllayên PKKê ji Bakurê Kurdîstanê û Tirkiyeyê, pêvajoyek nû destpêkir. Hûn vê pêvajoyê çawa dinirxînin?**

Partiya Çep piştgiriya çareserkirina pirsgirêka Kurdan a bi rêyên aştî û demokrasiyê dike. Me bi salan ji bo vê armancê bangewazî kirin. Me li dijî firotina çekan ya Almanyayê çalakî pêkanîn û pêşniyarname dan parlementoyê. Ez hêvî dikim pêvajoya ku di 21ê Adarê de destpêkir, şerê 30 salan yê li Tirkiyeyê bi dawî bîne.

*Hevpeyvîn :*
***Seyîdxan Kurij** Duisburg*

# Amed dibe mêvanê Viyanayê




**Koln (Rûdaw) -** Viyanaya paytexta Awisturyayê wê ji dawiya Tebaxê û pê de du mehan malovaniya Amedê bike. Roja 31ê Tebaxê wê li Viyanayê “Rojên çandî yên Amedê“ destpêbikin. Serokê Şaredariya Bajarê Mezin a Amedê Osman Baydemîr jî wê roja vekirinê li Arkadenhof a şaredariya Viyanayê amade be. Herwiha hunermend Rojda jî wê konserekê pêşkêş bike.

Di çarçoveya heman bernameyê de wê pêşangeheke hunermend Gultekin Tetik, ya ku ji 50 wêneyên Amedê pêk tê, roja 1ê Îlonê li mûzexaneya Viyanayê ya bi navê Weltmuseum jî were vekirin. Pêşangeh wê du mehan dom bike. Balkêşiyeke din ya pêşangehê ew e ku wê di hefteyên pêş de dengbêj jî li wir amade bin û stranên dengbêjiyê pêşkêş bikin.

Tê texmînkirin ku li paytext Viyanayê derdora 40 hezar Kurd dijîn. Ji beşa çandê ya şarevaniya Viyanayê Haydar Sarî û endamê meclisa bajêr Ernst Woller jî diyar kirin ku armanca wan bi “Rojên Çandî yên Amedê“ ne tenê Kurdên li Viyanayê dijîn e, ew herwiha dixwazin Amedê bi herkesî bidin nasandin.

## Dengê Zengilê Şer

**Ahmet Dere**



Van rojan hêzên ewropî û amerîkî ketine nava hewldanên ji bo amadekariyên êrişa li dijî rejîma Baasa Sûriyê. Mesajên ku ji Washington, London û Parîsê tên, diyar dikin ku ev hêz di nava amadekariyên jidil de ne.

Di çarçoveya konsepta Bihara Erebî de divê rejîma Baasê bê xistin. An ewê bi xwe biçe, an ewê bê xistin, ji bilî vê yekê rêyekê din naxuyê.

Heya niha bi arîkariya Rûsya û Çinê Beşar Esad li ber xwe da, lê belê diyar nîne ku wê heya kengî Rûsya û Çin piştgiriya wî bikin. Di demên borî de jî me baş dît ku hêzên weke Rûsya û Çin dikarin helwesta xwe biguherin. Ev rastiya berjewendiyên dewletan e, bayê menfietê ji kû ve werê, ew berê xwe diden wê derê.

Piştî îdiaya ku dibê hêzên rejîma Baasê çekên kîmyewî bikaranîbe, hêdî hêdî zimanê rayedarên Rûsya û yên Çinê jî diguhere. Çendî heta niha ne diyar e ku rejîma Baas heman çek bikaranîbe jî, fatûreya heman kiryarê ji wê re tê derxistin. Lewre wisa dixuyê ku di nava çend rojan de wê helwesta Rûsya û Çinê biguhere. Eger di siyaseta van du hêzan de ti guhertinek çênebe, mirov dikare bêje ku wê pêvajoya şerê sar careke din destpêbike.

Beriya ku rayedarên YE û yên Amerîkayê ragihînin ku ewê bikevin nava amadekariyên "cuda", wezîrê karê derve yê Tirkiyeyê da xuyan ku welatê wî amade ye ku tevlî êrişekê li dijî rejîma Baas bibe.

Rewşa Rojavayê Kurdistanê rayedarên tirk kiriye nava hewldanên lezgîntir. Lewre tiştekê wisa ji bo dewleta tirk pirr asayî ye. Tenê ji bo ku Kurdên Rojava nebin xwedî statûyekê, çi ji destê wan were ewê bikin. Eger pêwîst be, artêşa tirk dikare ji hêzên leşkerî yên ewropî û amerîkî re pêşengiyê jî bike. Dema ku statûya Kurdan dibe mijara gotinê, dewleta tirk xwe ji ti zehmetî û xeteriyan dûr nagire.

**Ewê nehêlin zarokên Osmaniyan bi wan re bibin xwedî heman mafan.**

Lê belê çawa ku rayedarên tirk hêvî dikin wê wisa nebe. Ne Amerîkî û ne jî Ewropî naxwazin dewleta tirk bi wan re pariyan parve bike. Lewre ewê heya derekê ji hêza dewleta tirk îstifade bikin, lê belê ji xetekê bi şûn de ewê nehêlin zarokên Osmaniyan bi wan re bibin xwedî heman mafan. Ji ber ku me di dîroka Ewropî û Amerîkiyan de mînakên bi vî rengî dîtine.

Çi û çawa dibe bila bibe, êdî rejîma Baas nikare xwe li ser nigan bigire, divê ew biçe, an jî di nav xwe de guhertinên pir bingehîn pêkbîne. Dengê zengilê şer hêdî hêdî nêzîktir dibe.

# Bûkê xesû kişand pêş dadgehê



**Bielefeld (Rûdaw) -** Li bajarê Almanya Bielefeldê dadgeha herêmî biryar da ku xesûyeke kurd 3 hezar Euro heqê razîkirinê bide bûka xwe ya berê.

Malbateke kurd ya ku li Bielefeldê dijî, beriya du salan ji Rojavayê Kurdistanê keçeke ku niha temenê wê 22 salî ye, ji kurê kurê xwe yê niha 35 salî re xwestin. Li gor zanyariyên dadgehê, wê demê malbatê 6600 Euro jî qelend dabû malbata keçikê. Piştî malbatê bûka xwe anî Almanyayê, ew ji Tebaxa 2011ê heta Adara 2012ê ligel hevjînê xwe, dişa xwe û xwesûya xwe ya 67 salî di heman xanî de jiyaye.

Lê belê ji ber pevçûnan û lihevnekirinê bûka malê cihê bû. Piştî cihêbûna bûkê, wê serî li polîs da û diyar kir ku heta wê demê gellek caran li wê hatiye xistin, herwiha di 19ê Adara 2012ê de jî ji çenteyê wê zêrê wê hatine dizîn. Pirraniya gazindên wê jî ji xesûya wê bûn.

Li gor îfadeya bûka berê, ev zêr jî di dema zeweca wê de wekî diyarî jêre hatibûn dayîn. Dozger jî ji ber lêdan û diziya zêran doz li xesûyê vekir û di encamê de dadgehê biryar da ku xesû 3 hezar Euro tezmînat bide bûka xwe ya berê.

## Dadgehê rê vekir:

# Beyî ku ziman bizane nasnameya almanî stand



**Köln (Rûdaw) -** Jineke tirk ya 62 salî ji bo bibe hemwelatiya alman serî li daîreya hemwelatîbûnê da. Lê belê daîreya serîlêdana hemwelatîbûnê erêkirina vê serîlêdana wê girêdayî çûyîna kurseke zimanê almanî kir. Lê belê jinika bi temen nizane bixwîne û binivîse. Li ser vê yekê jina tirk, ku ji sala 1981ê ve li Almanyayê dijî, serî li dadgehê da. Dadgehê jî biryar da ku divê daîreya berpirsiyar mafê hemwelatîbûna alman bidê jinika tirk.

Li gor qanûna hemwelatîbûnê, eger kesek bixwaze bibe hemwelatiyê alman, pêwist e hem bêyî arîkariya dewletê debare xwe bike û hem jî bi zimanê almanî bizane. Lê belê di heman qanûnê de biryara dawî bi hêviya memûrên berpirsiyar ve tê hiştin û ew dikarin li gor şertên serlêder serlêdanê erê bikin yan jî li dijî wê yekê derkevin.

Jina tirk ya ku şeş zarokên wê bûne hemwelatiyên alman, ji xwe ne bawer bû ku bi rêya kursê fêrî almanî bibe û li ser vê yekê serî li dadgeha eyaleta Baden Wurttembergê da. Dadgeha eyaletê jî biryar da (Az.: 11 S 208/13) ku divê daîreya berpirsiyar serlêdana wê erê bike. Di biryarê de hat destnîşankirin ku qanûna hemwelatîbûnê destê memûran vekirî dihêle û ew dikarin li gor takekesên serîlêder biryarên guhertî bidin. Herwiha jina tirk bi awayekî serketî û entegrebûyî zarokên xwe mezin kirine û ji ber ew nexweş e, pêwistiya wê ya çûyîna kursê nake. Bi vî awayî jina tirk jî wê bibe hemwelatiya alman.

Bi vê biryarê rê li ber gellek biyaniyên li Almanyayê dijîn vedibe ku ji ber sedemên cuda nikarin fêrî almanî bibin û nikarîbûn mafê hemwelatîbûnê bidest bixin. Hêjayî gotinê ye ku rêjeyek bilind ya Kurdên temenmezin ku bi xwendin û nivîsandinê nizanin û ji ber wê yekê nikarin zimanê almanî fêr bibin li Almanyayê hene. Ev yek jî dibe asteng li pêşiya wan ku ew mafê hemwelatîbûna alman bidestbixin. Ev biryar wê ji gellek Kurdan re jî bibe biryareke emsal.




# Tîmeke almanî

# BI HESTÊN KURDISTANÎ




Hasan Yüksel (yekemîn ji aliyê rastê ve)

**Köln (Rûdaw) -** Tîmeke almanî, bi lîstikvanên ji gellek neteweyan û li ser ala wan jî Kurdistan. Tîma Sportfreunde Fasanenhof, ku di lîga amator ya bajarê Almanya Kasselê de dilîze, îsal armanceke cuda daniye pêşiya xwe: ew dixwazin tevlî bernameyeke televizyonê bibin. Tîmên ku tevlî wê bernameyê bibin, wê sûd ji rawêjkariya pêşkêşvanê bernameyê Hans Sarpei wergirin, ji bilî xezanca îmajê. Hans Sarpei ligel Schalke 04 heta Champions-League jî lîstiye.

Beriya sê salan Sportfreunde Fasanenhof, ku di sala 1975ê de hatibû avakirin, ji ber cudabûna gellek lîstikvanan li ber hilweşandinê bû. 17 ciwanên kurd jî, ku di dema xwe ya vala de ji xwe re gog dileyîstin, mîzgînî û diyariyeke neçaverêkirî bû. Piştî ku têkilî di navbera rêveberiya Sportfreunde Fasanenhof û ciwanên kurd de çêbû, lihevhatin çêbû ku ew ciwan tevlî tîm bibin. Ji wê demê ve Sportfreunde Fasanenhof bi rêkûpêkî di lîga herêmî de dileyizin û îsal jî di Kreisliga B ya Kasselê de têdikoşin.

Antrenor û lîstikvanê tîm Hasan Yüksel e. Hasan Yükselê niha 31 salî di 11 saliya xwe de ligel malbata xwe weke penaber ji Bakurê Kurdistanê hatiye Almanyayê. Hasan Yükselê ku xwendina zanîngehê qedandiye, dixwaze ku ciwanên kurd ji koka xwe netirsin, weke ku wî ji malpera HNA.de re gotiye: "Pêwîst nake ku hûn ji wê yekê bitirsin ku hûn çi ne." Li gor Hasan Yüksel, bi gellek Kurdan re trawma heye û hizir dikin ku li Almanyayê jî ew tên serkutkirin û dibêje ku di tîma wan de siyaset û ol ne giring in, herwiha tundî jî nayê qebûlkirin.

Ji bo bernameya derbarê futbola amator li Almanyayê de (Hans Sarpei – das T steht für Coach), ku wê di kanala Tele 5 de were weşandin, bêtirî 170 tîmên amator ji seranserê Almanyayê xwe pêşniyar kirine. Hilbijartina 11 tîmên ku wê di bernameyê de cih bigirin, wê dawiya vê mehê bê kirin. Bername wê ji 17ê Mijdarê ve her rojên Yekşemê seet 18:30 bên weşandin. Eger tîma Sportfreunde Fasanenhof jî di nav wan tîmên bijartî de be, Hasan Yüksel xwe amadeyî suprîzekê kiriye: "Emê formekî tîma me yê reş bi nivîsa zêrîn diyarî bidin Hans Sarpei."

## Nazdar:
# Tenê li kanala Rûdaw dinêrim

Hunermenda bi eslê xwe ji Bakurê Kurdistanê, Nazdar Cizîrî, ku li Almanyayê dijî, vê dawiyê serdana Başûrê Kurdistanê kir. Di vê hevpeyvînê de Nazdar behsa serdana xwe, karên xwe yên hunerî û nêrîna xwe li ser kanala Rûdawê dike.

**Rûdaw: Ev demeke te serdana Başûrê Kurdistanê nekiribû, çima tu vê carê dereng mayî?**

**Nazdar:** Sedemên dereng hatina min a vê carê ji bo Başûrê Kurdistanê ew bû ku mijûlî karê hunerî bûm. Min 2 klîp çêkirin, yek bi kurmancî û yek bi soranî. Min vê carê xwest karekî cuda ji karên xwe yên berê bikim. Berê karên min bêhtir folklorî û govend bûn. Lê vê carê pirr ji karên xwe razî me. Hêvîdar im Başûrê Kurdistanê wiha lê bê ku êdî hunermend neçin Tirkiyeyê û welatên din ji bo tomarkirina berhemên xwe û êdî em li Herêma Kurdistanê karên xwe yên hunerî bikin.

**Her dema tu tê Başûrê Kurdistanê, tu serdana bajarê Amêdiyê dikî. Çi taybetmendiyeke Amêdiyê li cem te heye?**

Gava dibêjin Amêdî, yekser mamoste Tehsîn Teha tê bîra min. Bi rastî hunermendekî pirr jêhatî bû. Ez bi dengê mamoste Tehsîn Teha mezin bûm. Pirr ji xwezaya Amêdiyê jî hez dikim, wek tabloyeke hunerî tê ber çavê min, ji bilî vê yekê jî xelkê Amêdî pirr birêz in. Çiqasî ez serdana wan dikim, pêşwaziyeke germ li min dikin.

**Tu rewşa Rojavayê Kurdistanê çawa dibînî û gotina te derbarê rewşa Kurdistanê de çi ye?**

Bi rastî ez rewşa niha ya Rojavayê Kurdistanê pirr xerab dibînim. Dilê min ji bo xelkê wir dişewite. Ez dibînim ku gellek Kurdên Rojavayê Kurdistanê ji ber rewşa xwe ya xerab tên Başûrê Kurdistanê. Hêvîdar im xelkê Başûrê Kurdistanê bêhtir hevkariya wan bikin û deriyên xwe ji wan re vekin, ji ber ku ew jî xwuşk û birayên me ne. Pirr giring e ku hevkariyên me ji bo wan penaberan di astekê de bin, ku li vir hest bi xerîbiyê nekin. Herwiha hêvîdar im Rojavayê Kurdistanê jî wek Başûrê Kurdistanê bibe parçeyekî din ê serbixwe yê Kurdistanê, da ku em bikarin li wir jî konsertên hunerî saz bikin. Ez wek hunermendeke kurd di xizmeta Kurdên Rojavayê Kurdistanê de me û amade me bi her awayî hevkariya wan bikim.

**Li kanala Rûdaw dinêrî, kanaleke çawa ye?**

Dixwazim pîrozbahiyeke germ li karmendên Tora Medyayî ya Rûdawê bikim. Ev demeke ez li Başûrê Kurdistanê me, di vê demê de min tenê li Rûdawê nêrî. Bi rastî pirr bi karkirina Rûdawê matmayî me. Pirr jî dilxweş bûm gava min ew mizgînî ji Rûdawê bihîst ku bi niyet in di siberojê de kanaleke hunerî vekin. Bi wê hêviyê me ku ew kanal bi heman kalîteya kanala siyasî xizmeta hunera kurdî bike.

**Hevpeyvîn:**
**Alan Nêrweyî**
*Amêdî*





# Sonya Bêtûşî dibe pêşkêşkar

Dîzaynera kurd Sonya Bêtûşî ragihand ku ew di demeke nêzîk de bernameyeke taybet bi modeya cilûbergan di kanaleke ezmanî ya Herêma Kurdistanê de pêşkêş dike.

Sonya, ku xwediya çend dîzaynên cilûbergên jinan ên kurdî ye, derbarê wê bernameyê de ji Rûdawê re got: “Ew bernameya min ji bo wê yekê ye ku xelkê Kurdistanê di warê mode û dîzayn de şareza bikim û bikarim bi vî rengî pêngavekê ji bo pêşxistina mode û dîzaynê li Kurdistanê bavêjim û arîkariya jinan bikim ku bikarin cilûbergên hêjayî xwe li xwe bikin.”



# Osman Ocalan:

# 90% tiştê ku li Rojava diqewime bîr û baweriya *Cemîl Bayik* e

Osman Ocalan, birayê rêberê zindankirî yê PKK Abdulla Ocalan, PYDê bi tekperestiya di desthilatê de li Rojavayê Kurdistanê tohmetbar dike û dibêje ku ew yek bi yek siyaseta PKKê bi cih dike. Osman Ocalan li bajarê Koyê li Başûrê Kurdistanê derbarê rewşa navxweyî ya PKKê, kongreya neteweyî ya kurdî û proseya aştiyê li Bakurê Kurdistanê nêrînên xwe bi Rûdawê re parve kirin.

- Lê baweriya min wiha ye ku Nêçîrvan ligel Ocalan rûniştinê pêk bîne.
- Rewş ji Kurdan re li hev hatiye.
- PDK dixwaze hêzên wek PKKê neçarî guherînan bike.
- PKK dixwaze bi kongreya neteweyî desthilata xwe li hemû parçên Kurdistanê bihêztir bike.
- Ew kongreya neteweyî ya ku niha tê girêdan xewna Îdrîs Barzanî bû.
- PKK û PYD ne demokratîk in.

**Rûdaw: Tu rewşa niha ya Rojavayê Kurdistanê çawa dinirxînî?**

**Osman Ocalan:** Rojavayê Kurdistanê di şoreşê de ye. Derfetek ji Kurdan re derketiye holê, da ku azadiya xwe bi dest bixin. Rejîma Esed lawaz e. Opozisyon jî lawaz e. Ne Esed dikare desthilata xwe birêve bibe, ne jî opozisyon dikare desthilatê bi dest bixe. Hinek welat piştgiriya rejîma Esed dikin û beşekî din jî piştgiriya opozisyonê dikin. Gellek hêzên din jî hene ku bêalî ne, tirsa wan ji hêzên îslamî yên tundrew û al-Qaîde heye. Ya giring ku Kurd bikarin azadiya xwe bi dest bixin. Rewş ji Kurdan re li hev hatiye. PYD hêza mezin a Rojavayê Kurdistanê ye. Herwiha hêzên din jî hene, lê ji hevbeşiya desthilatê bêpar in. PYDê hemû desthilatî xistiye bin destê xwe, ji hêzên din re dibêje divê dozê ji me bikin. Eger na, beşadarî desthilatê nabin. Ev yek bereya Kurdan lawaz dike. Lewma vêye wiha kiriye ku bereya el-Nusre û hêzên tundrew derkevin û êrişî Kurdan bikin.

**Sedema lawaziya Kurdan li Rojava çi ye?**

Sedema her lawazbûnekê siyaseta tekperest e. Eger tu bibêjî ez hêza yekemîn im û divê her tişt bi daxwaza min bibe, herwiha hêzên din beşdarî desthilat û şoreşê nakim, ev yek lawaziyê çêdike û tu nikarî hemû xelkê rêk bixî.

**Ango hûn PYDê wek sedema çênebûna îdareya hevbeş dibînin?**

Di felsefeya PKKê de, wek sîstemeke sosyalîstî, siyaseta tekperestiyê heye. Sîstema PKKê ji sîstema sosyalîstî ya kevin bingeha xwe digire. Yanî yek partî û yek serok û yek desthilatî. Lewma naxwaze ti hêzeke din beşdar bike. Divê em wê yekê zanibin ku ew sîstema ku hemû hêzan beşdar dike bihêz dibe, eger na lawaziyê çêdike. Wek mînak gava li Başûrê Kurdistanê her hêzekê digot divê ez xwedî desthilat bim, kêşe û nakokî û şerê navxweyî derket. Vê yekê jî Kurd lawaz kirin. Lê gava li hev hatin û hevpeymanî çêkirin, Kurd bihêz bûn.

**Yanî tiştê ku li Rojavayê Kurdistanê tê dîtin siyaseta PKKê ye û PYD wê cîbicî dike?**

Fikir û felsefeya PKKê siyaseta tekperestî û tekdesthilatî ye. Gava ez di nav PKKê de bûm, min xizmeteke mezin pêşkêş kir. Tew wan demên ku serok Apo jî zindanî bû, em berdewam bûn di şoreşê de û me rê neda ku şoreş têk here. Min 30 salan di nav PKKê û şoreşê de xebat kir, lê bi pênûsekê hêla sor bi ser min de kişandin û gotin em te qebûl nakin. PKK hevbeşiyê qebûl nake, lewma em dibînin ku PYD ji sedî sed siyaseta PKKê li Rojavayê Kurdistanê birêve dibe. Lewma rê nade beşdariya fireh a partiyên din.

**Ramana tekperestiyê li ba Apo jî heye?**

Li ba Apo û li ba PKKê jî ramana tekperestiyê bihêz e. Lê wiha dibînim ku fikirê Apo guheriye.

**Ev çend sal in ku te Apo nedîtiye?**

Dora 22 salan.

**Tiştê ku PYD li Rojavayê Kurdistanê cîbicî dike nêrîna giştî ya PKK ye, yan siyaseta beşekî ji karbidestên PKKê ye?**

Damezrandina PKKê li ser destê Apo ye. Yên din jî Cemîl Bayik, Dûran Kalkan û Elî Heyder Kaytan in. Niha ew ligel Cemîl Bayik PKKê birêve dibin û li jêr serokayetiya wî ne. Cemîl Bayik xwedî hêz e, nemaze baskê çep û elewî. Eger di rêza yekemîn de bandora serok Apo hebe, di dû wî de Cemîl Bayik xwedî bandor e. Lewma em dibînin ku bandora xwe bikaraniye. Dikarim bêjim ji sedî 90ê tiştê ku li Rojavayê Kurdistanê diqewime, bîr û baweriyên Cemîl Bayik e, ku baweriyeke sosyalîstî Stalînî ya tundrew e.

**Ew baweriya Bayik a ku hûn behs dikin, çi bandor li ser Rojavayê Kurdistanê çêkiriye?**

Gava em behsa demokrasiyê dikin, demokrasî, yanî çêkirina hêzeke mezin, da ku civakê bihêz bike û pirsên mezin û biçûk çareser bike. Tiştê ku PKK bi rêya PYDê birêve dibe, Kurd lawaz kirine. Ev jî bûye cihê dilgiraniya Kurdan, bi wê yekê ku hest nekin ku ev şoreşa hemû Kurdan be. Divê PKK û PYD siyaseta xwe biguherin.

**Çawa biguherin?**

Divê rê bidin ku hemû partî cihê xwe di nav şoreş û desthilatê de bigirin û rola wan jî hebe. Niha desthilat li Rojavayê Kurdistanê, li şûna ku desthilata neteweyî be, bûye desthilata tekpartî. Divê PKK û PYD zanibin ku dostên PDKê û YNKê li Rojavayê Kurdistanê hene û nabe PYD bêje bi tenê ez her tişt im. Wek mînak hêzeke Partî ya siyasî û aborî ya mezin heye, divê rê li ber bê vekirin ku di xizmeta şoreşa Rojava de bê bikaranîn. Bi vî awayî şoreş bihêztir dibe. Lê PYD vê yekê qebûl nake.

**Çima PYD qebûl nake, ji çi ditirse?**

Ji ber ku PKK û PYD ne demokratîk in, demokrasî di nav wan de pirr qels e. Eger hebe jî, demokrasiyeke sexte ye û ne bingehînî ye. Eger demokrasî di nav wan de hebûya, ez cihê nedibûm. Ji ber ku rê nedidan ez bîr û baweriyên xwe berçav bikim, tew gefa kuştin û îdamê jî li min xwarin, lê Apo rê neda wan.

**PYD dibêje hemû Rojavayê Kurdistanê ligel me ye, lewma mafê me heye ku desthilata me ya rewa hebe...**

Beriya her tiştî demokrasî mafê kêmîneyan diparêze. Lê PYD ji demokrasiyê fêm nake û baş jê tênegihiştiye. Eger ji sedî 60ê xelkê Rojavayê Kurdistanê ligel PYD bin, erê ji sedî 40ê din çi bikin? Jixwe pêwistiya wan jî bi hêz û aliyên xwe yên siyasî heye. Dijminên Kurdan pirr in. Niha Tirkiye û Siûdî piştgiriya grûpên tundrew ên Sûriyê li dijî Kurdan dikin. Lewma divê em wê rastiyê zanibin ku piştguhkirina ji sedî 1ê xelkê jî me lawaz dike.

Divê ev şoreş şoreşa hemû Kurdan be, bi hemû hêz û aliyên wan. Divê desthilata Rojavayê Kurdistanê desthilata hevbeş be û ya hemû Kurdan be, ne ku aliyek bê bi tena xwe hukim bike.

**Beriya demekê Cemîl Bayik gef li PDKê xwarin, nêrîna we derbarê wan gefan de çi ye?**

Cemîl Bayik kesekî sosyalîstîstalînî yê tundrew e. Malbata wî hemû bi dewleta Tirkiyeyê re ne, tenê birayekî wî di nav şoreşê de ye. Baskê wî yê çep û tundrew heye. Gava dibîne ku PDK sîstema federaliyê diparêze û peymana wê ligel YNK heye, her çiqasî YNK ji ber cudabûna Goran lawaz bûye û nexweşketina Mam Celal ew lawaztir kiriye, lewma Cemîl Bayik gefan li PDKê dixwe. Gefxwarina li PDK jî, gefxwarina li hikûmeta Herêma Kurdistanê ye, ji ber ku PDK hêza karîger a hikûmeta Herêma Kurdistanê ye. Lewma hewldan hene ku têk bidin. Bayik li şûna ku daxwazê ji hikûmeta Herêma Kurdistanê û PDKê û Mesûd Barzanî bike ku hevkariya hev bikin, lê belê tê gefan li wan dixwe. Ez wê gefxwarina Cemîl Bayik şermezar dikim û rexne dikim. Bangewaz dikim ew poşman bibe.

**Yanî hûn li hember gefên Cemîl Bayik piştgiriya PDKê dikin?**

Ez berjewendiya neteweyî tînim ber çavên xwe. Eger PDK û hikûmeta Herêma Kurdistanê jî şaştiyên wan hebin, ez wan rexne dikim. Aliyê ku hikûmeta Herêma Kurdistanê birêve dibe PDK ye. Dibe ku kêmasî hebin.

**Ew kêmasî çi ne?**

Dixwazim alîkariyên mirovî bên zêdekirin. Rast e, PYD dest

daniye ser hemû tiştan, lê nabe ev bibe sedem ku sînor bên girtin. Ev jî bi daxwaza hevkariyê dibe, neku tu bê û gefan bikî.

**Hûn di dema niha de kê wek mêjiyê rêveber yê PKK dibînin?**

Kesên ku PKKê birêve dibin Cemîl Bayik, Dûran Kalkan, Mistefa Karasû û Elî Heyder Kaytan in. Ew 4 nav in, lê heman fikirîna wan heye. Ew baskên tundrew yê sosyalîstî stalînî ên di nav PKKê de ne.

**Ew baskê tundrew yê leşkerî ne, yan siyasî ne?**

Bi rastî wan karê leşkerî jî nekiriye û tê de lawaz in. Di aliyê siyasî de jî tenê li wê yekê difikirin ku sîstema tekrewî biçespînin.

**Nakokiyên we yên taybet bi wan re hene, yan nakokiyên fikirî û siyasî?**

Nakokiyên me yên fikirî hene. Ez kesayetiyeke niştimanperwer û welatparêz im, lê ew çepgir û tundrew in. Lewma nakokiya me di vê yekê de hebû. Lewra ji min re gotin yan emê te bikujin, yan divê tu dev ji PKK berdî. Dibe ku hinek nakokiyên me yên taybet jî hebin. Min dixwest ew grûpa çep a tundrew di nav PKKê de nemîne, lê ew rijd bûn li ser bîr û baweriyên xwe. Niha jî desthilat in û grûpa mezhebê elewî ne.

**Niha kêşeya we bi PKKê re heye?**

Bîr û nêrînên min ji PKKê cuda ne. Ew sosyalîstên tundrew in. Ez jî demokrat im.

**Wate hûn xwe wek endamê PKKê nabînin?**

Na. Lê dixwazim em bi hev re xebatê bikin.

**Êdî hûn partiyeke siyasî pêk tînin?**

Erê. Eger vegeriyam Tirkiyeyê, mafê min e ku siyasetê bikim.

**Hûn jê natirsin ku PKK rê nede we ? Ji ber ku hûn dibêjin bîra PKKê takperestî ye?**

(Bi ken) Çi bêjim, min biryara dawî nedaye. Ez mijûlî lêkolîn û komkirina zanyariyan im. Lê ev bîrokeya min heye.

**PKKê lêborîna giştî derxist. Ev lêborîn gihîşte kû derê?**

Weke çawa ku di serdema "Turkekemalîstan" de lêborîna rast nebû, bi heman awayî di bîr û baweriyên PKKê de lêborîna rast nîne. Tu binêrî, demekê Samî Ebdulrehman ji PDKê cuda dibe, piştre vedigere nav PDKê, dibe kesayetiya duyem. Mela Bextyar ji YNKê cuda dibe û partiyekê pêk tîne, piştî çend salan vedigere nav YNKê, dibe ku piştî Mam Celal jî bibe kesayetiyê yekem. Lê mixabin di nav PKKê de ev têgihiştin nîne. Ew kesayetiyên serbixwe û azad qebûl nakin.

Êdî we biryara wê yekê daye ku careke din venegerin nav PKKê?

Venagerim. Divê PKK xwe reforme bike. Divê pêwendiyê ligel hêzên demokrat ên cihanê xurt bike. Ligel hêzên din ên kurd siyaseteke baştir peyrew bike. Mafên mirov û mafên kesayetî û navxweyî xurt bike. Herwiha dev ji ramana takperestî û tundî berde.

**Çima PKK partiyên siyasî li parçeyên din ên Kurdistanê pêk tîne?**

PKK dixwaze desthilatê xurt bike û li hemû Kurdistanê hebe. Ev partiyên ku pêk anîne, ne partiyên serbixwe ne. Min bi xwe pêk anîn. Kongreya damezirandina Partiya Çareseriyê (PÇDK) min pêk anî. Lê bîr û nêrînên min ew bûn ku piştî 6 mehan ev partî serbixwe bin. Lê ramana Cemîl Bayik ew bû ku girêdayî PKKê bin. Piştî çûna min, niha ew partî ser bi PKKê ne.

**Eger rewşeke weke Rrojava li Rojhilatê Kurdistanê jî pêk bê, PJAK jî heman siyaseta PYDê beramber partiyên Rojhilat cîbicî dike?**

Ji sedî 100, bêyî ti danûstandinê vê dike. Ji ber ku hêzên din ên Rojhilat razayî û gellekî qels in. Hêza PJAKê ya herî mezin e. Ev hêzên razayî ne xebata leşkerî ne xebata siyasî nakin. Lewma pêşbînî li ber çav e.

**Bi nêrîna we, divê çi bê kirin, da ku ev rewş dubare nebe?**

Divê peyman di navbera hemû hêzan de hebe. Peyman di navbera PDKê û PKKê de hebe. Heta aliyek nikaribe bi tenê fermandariya Rojavayê Kurdistanê bike.

**Hûn bi xwe dibêjin ewa ku li Rojava dibe cîbicîkirina siyaseta PKKê ye. Êdî peymanê li ser çi bikin?**

**Tiştê ku PKK bi rêya PYDê birêve dibe, Kurd lawaz kirine. Ev jî bûye cihê dilgiraniya Kurdan, bi wê yekê ku hest nekin ku ev şoreşa hemû Kurdan be. Divê PKK û PYD siyaseta xwe biguherin.**

Ewa ku em li Rojhilata Navîn dibînin, ev şoreşên ku pêketin, hemû vedigerin bo siyaseta takepartî û xelkê jî serhildan kirin û doza demokrasiyê kirin. Divê PKK têbigihije ku siyaseta hevbeş pêwîst e. Di nav PKKê de ev daxwaz heye. Dema me sala 2003yê xwest ku reformê bikin, 80 ji sedî ji karzanên PKKê ligel min bûn. Da ku wan neçarî reformê bikin, pêwîst e guşareke neteweyî hebe, heta vê guhertinê bikin û dev ji desthilata takepartî berdin. Ligel PDKê jî bigihijin peymanê ku PYD hevbeşiyê qebûl bike.

**Nêrîna we li ser serdana Salih Muslim ji bo Tirkiyeyê çi ye?**

Ev serdan û danûstandin karên baş in. Tirsa Tirkiyeyê bi xwe jî heye. Ji wê yekê ditirse ku li Rojavayê Kurdistanê weke Başûrê Kurdistanê sîstemeke federalî pêk bê. Ev jî dike ku Kurdên Bakur dozdariyên mezintir li Tirkiyeyê bikin.

Tirkiye jî vê yekê wek têkçûna rewşa xwe ya navxweyî dibîne. Lewma pêwîstiya wê bi danûstandinê heye. Ev danûstandin jî di navbera Başûrê Kurdistanê û Tirkiyeyê de li aliyekî û Rojavayê Kurdistanê û Tirkiyeyê ji aliyekî din ve birêve diçe. Lê beriya her tiştî, divê PKK û PDK bigihijin peymanekê, ku pêwîstiya Rojavayê Kurdistanê bi desthilata neteweyî heye, ne ku desthilata partîzanî.

**Tirkiye rê dide wê yekê ku li Rojavayê Kurdistanê îdareya xwebirêvebir bê damezrandin?**

Tirkiye neçare rê bide. Wek ez têgihiştim, Tirkiye gihiştiye vê rastiyê ku Kurd bigihijin mafên xwe. Vêce federalî be yan otonomî be. Dibe ku Tirkiye nexwaze Kurd cuda bibin. Niha asayî ye li cem wan ku Başûrê Kurdistanê bi awayekî federalî hukmê xwe dike, lê ji bo Rojavayê Kurdistanê sîstemeke xwebirêvebir bixwaze. Tirkiye nikare pêşiya Kurdan bigire. Divê vê qebûl bike.



**Proseya siyasî li Tirkiyeyê çawa ye û digihije kû derê?**

Sala 1993yê Mam Celal xebateke taybet kir, da ku ev kêşe di navbera PKK û Tirkiyeyê de çareser bibe. Ew jî siyaseteke stratejîk ya girîng bû. Mam Celal dizane ku çareseriya kêşeya Bakur wek qezencekê ye ji bo asayişa Başûrê Kurdistanê. Lewma gellekî hewl da da ku ligel Turgut Ozal û PKKê bigihijin peymanekê. Lê biserneketin. Lewma dema em behsa proseya aştiyê bikin, divê em li Tirkiyeyê yekem car navê Mam Celal bînin. Lê di warê cîbicîkirinê de rola mezin a kak Nêçîrvan Barzanî heye. Vê proseyê jî niha destpêkiriye. Ez piştrast im. Lê baweriya min wiha ye ku Nêçîrvan ligel Ocalan rûniştinê pêk bîne. Serok Mesûd Barzanî jî herdem ligel aştî û çareserkirina kêşeya kurdî bû. Dr. Berhem jî bandor û rola wî bi xwe hebû.

**Hûn dibînin ku ev prose biserkeve?**

Dibe ku hinek astengî hebin û çend mehan raweste, piştre destpêdike. Di nêrîna min de sala 2014-2015ê encam dide û biserdikeve. Kurd jî digihijin mafên xwe yên bingehîn û siyasî.

**Nêrîna we derbarê kongreya neteweyî de çi ye, ku biryar wiha ye di meha Îlonê de bê lidarxistin?**

Ez baş dibînim. Ewa ku têbîniyê dikim, ku PKK dixwaze desthilata xwe li hemû beşên Kurdistanê xurttir bike. Lewma dixwaze kongreya neteweyî bikarbîne. PDK jî dixwaze hêzên wek PKKê neçarî guherînan bike. Grûpên din jî hene dixwazin berjewendiyên Kurdan bi rêya kongreya neteweyî biparêzin. Lê ewa ku ez dibînim, ev kongre bêhtir weke kongreyeke partîzanî ye. Pêwîst e bêhtir kesayetiyên serbixwe endamên kongreyê bin. Divê blokekî mezin yê serbixwe hebe ku rê nede ku berjewendiyên partiyan xurt bin. Tirsa min heye, ku ev kongre bisernekeve û nakokî di navbera partiyan de bêhtir bibin. Ez doz dikim ku neyê lidarxistin, heta şopandineke baştir jê re bibe.

**Ev kongre dikare gotareke kurdî ya hevbeş pêkbînê?**

Bi rastî kêmasiyên rêxistina vê kongreyê hene. Kesayetiyên serbixwe ne di kongreyê de ne. Hêla neteweyî ne li pêş e. Nabe bibe kongreyeke partîzanî. Ji ber ku desthilata partîzanî bitirs e, girîng e ku ji nîvê bêhtir ji endamên vê kongreyê kesayetiyên serbixwe bin. Bi rastî kongreya neteweyî ya kurd be.

**Ji bo civandina hêz û aliyan, di salên heştêyan ji sedeya borî de Idrîs Barzanî celebek peyman ligel PKKê îmze kirin. Di vê bareyê de hûn çi difikirin?**

Niha rûyê siyaseta nû ya PDKê kak Nêçîrvan Barzanî ye. Ew ji bavê xwe fêrî gellek tiştan bû. Malbata Barzanî dibistana siyasetê ye. Buhiştî Idrîs Barzanî, ku dostekî me bû, gellekî hewl da ku yekîtiya neteweyî pêk bê û şer û kêşe bên hilanîn. Herwiha xizmeta berjewendiya Kurdan bike. Ewa ku niha em dibînin berhema wê xebata ji mêj ve ya buhiştiyê bavê wî ye. Lewma ev kongreya ku niha dibe bê lidarxistin xewn û arezûya wê demê ya Kak Idrîs Barzanî bû. Lewma hemû alî hewla serketina vê kongreya neteweyî didin, bi mercekî ku nebe kongreya partiyan.

**Hevpeyvîn:**
**Dana Hadî** *Koye*



# Destkeftiyên Rojavayê

**Selahattin Çelik**

Kurdistan bi Peymana Sykes-Picot ya Îngilîz û Frensiyan (1916) di Şerê 1mîn yê Cihanê de (1914-1918) bû çar beş. Tirkiye û Îran dewletên bi serê xwe bûn. Lê Iraq û Sûrî bi Îngilîstan û Frensayê ve girêdayî bûn. Rewşeke wisa hatibû avakirin ku ne tenê hezên herêmî, qeraseyên dinyayê jî nobedarên statukoya Kurdistanê bûn. Ango her hewldana statukoguhertinê bi berteka wan hemûyan re rûbirû dima.

Hêzên statukoparêz di navbera xwe de peyman jî girê didan û rêxistinên hevpar dadimezrandin. Pakta Sadabadê (1937, Tirkiye, Îran, Iraq û Afganistan), Pakta Bexdayê (1954, bi piştgiriya DYA û NATOyê; Tirkiye, Îran, Iraq, Pakistan, Îngilîstan) û CENTO (1959-1979, beyî Iraqê ji endamên Pakta Bexdayê pêk dihat), ji wan rêxistinan bûn. Û bi dehan peyman û rêxistinên di navbera dewletên rasterast serdestên Kurdan de... Encam ev e: Ji serdema Şere Sar (1945-1989) heya îro Kurd qurbanên vê polîtîkaya herêmî û navneteweyî ne.

Mebesta min nîşandana vê statukoya giran e. Heya hêzên serdest nekevin nav nakokiyên kûr an jî şer, serkeftina Kurdan hima hima bê derfet e. Peyitandinên gotinên min hene: Komara Kurdistanê ya Mahabadê (1946) di şertên şerê cihanî de pêkhatibû. Berxwedanên Başûr li Iraqê bi derbeyên leşkerî û aloziya desthilatê, bi nakokî û şerê Îran û Iraqê, herwiha bi dijberiya di navbera DYA û Yekîtiya Sovyetan de pêkan bibûn. Dîsa, ji aliyê DYAyê ve dagirkirina Iraqê (2003) rê ji damezrandina Herêma Kurdistanê re vekiribû. (PKK mînakeke taybet e, lê ew peytên min nade derewandin). Ango: Bi şer û êşa cîranan be jî, tevlîhevî û rûxandina statukoyê di berjewendiya Kurdan de ye. Ev peyt ne bêwijdanî ye, ji ber ku afirînerên vê rewşê ne Kurd in, berevajî, wan li ser êşa Kurdan ev statukoya dijwar û fetsîner ava kirine û heya îro yekî jê gazind nekiriye.

**Bi şer û êşa cîranan be jî, tevlîhevî û rûxandina statukoyê di berjewendiya Kurdan de ye.**

Ji zanyariyên dîrokê encama duyemîn ev e: Tevgerên kurd nikarin ji têkiliyên cîranan birevin, herçiqasî ew dijmin bin jî. Mirov dikare vê weke "polîtîkaya herêmî" bi nav bike. Divê Kurd vê polîtîkayê êdî baş bizanibin. Divê dilsozê hev bin, lê ne yên dijminan. Mirov dikare vê polîtîkaya herêmî bi "nedilsozî", "hêlperestî (oportunîstî)" û "keysokî" bi nav bike. Çi be jî, Kurd çiqas nedilsozê cîranên xwe bin, wê hewqasî nêzîkî serkeftinê bin. Ev ferman û mîrata serpêhatiyên dîrokê ye, Kurdan ji cîranên xwe tene bêbextî dîtine.

Di vê dîrokê de cihê Rojava çi yê? Di serdema dagirkeriya Frensiyan de (1920-1946), serekeyên Kurdan li benda xweseriye bûn. Lê nebû. Di serdema Baasê de (1963- ...) bilevkirina gotina "maf" jî sûcekî giran bû. Lê Rojava ji raperiya Şex Seîd (1925) û têkoşîna Agirî (1927-1930) û yên Başûr (1961-1975, 1980-1988) heya ya PKKê (1979- ...), bi dilkiriyeke mezin di nav tevgera kurd de bû.

Divê mirov aliyekî negatîf yê vê tekiliyê bi bîr bîne: Gava ji beşên din partiyên kurd diçûn Sûriyê, ji ber regezên dîplomasiyê, bi hikûmeta Şamê re "têkiliyên dostane" dadimezrandin. Partî û kesayetên Rojavayî jî ji bêgaviyê ew dişopandin. Ango li himberî Şamê bêtevgerî, heya şerê navxweyî yê Sûriyê, dibû polîtîka. Ji par ve, bi hêza erdhejiyê guhertin pêk tên. Çend xalên pozîtîf yên vê erdhejiyê ji bo Kurdan:

**Berxwedana Rojava tevkariyê li pêvajoya Bakur dike.** Ji serê vê salê ve li Bakur bi navê "pêvajoya çareseriyê" serdemeke aştîyane û nû heye. Sedemekî vê pêvajoyê têkoşîna Rojava ye, ji ber ku ew li ber planên Tirkiyeyê yên Sûriyê astengiyeke mezin e. Ji aliyê din; têkoşîna Rojava vîn û giyana tevgera Bakur geştir dike, derfetên nû jê re çêdike. Ev jî ku Tirkiyeyê bêgav dikin, ku divê bi awayekî lez pirsa kurd çareser bike.

**Rojava nebû cihê şer**! Dibe ku hinek li ber îdiaya min rabin û bêjin ku Şamê herêmên Kurdan ji PYDê re hiştine. Rast e, lê çi be jî, heya dema nêz bajar, navçe û gundên Kurdan, li gorî herêmên Ereban, ji rûxandina şer dûr mane.

**Rojava nebû hêlîna Cihadiyan.** Mirov wan weke nîjadperestên ereb bi bîrdoziya tundrew ya olî bi nav bike, dibe ku çêtir be. Ev nexweşî an jî meyldariya serdemê ye. Li Tirkiyeyê, di nav Kurdên koçber de, bi taybetî jî di nav nîfşa ciwan de, bîrdoziya tundrew ya îslamî bilez belav dibe. Bi awayekî plangerî û bi xerckirina pereyên mezin dixwazin li Sûriye û Rojava ciwanên kurd bikişînin nav xwe. Herçiqas ev metirsî hêj di rojevê de ye jî, Rojava bi pirraniyeke mezin vîna xwe li himberî wan dide pêş.

**Rojava bi hêza xwe ya neteweyî û sekûler, bandorê li beşên din dike.** Nifşên wê neteweparêz û têgihiştî ne. Ziman, çand û zargotina kurdî di nav gel de gellekî zexm e. Li Başûr û Bakur demûdezgehbûn bi bayê bezê dimeşe. Pêdiviya dezgeh û saziyan bi kadroyan zane hene. Kadroyên Rojavayî di çapemenî, televîzyon û organên din de valeyiyê tijî dikin û bandoreke mezin li wan dikin.

**Di qada navneteweyî de xwîngermiyê ji bo Kurdan çêdike.** Gellek sedemên vê hene. Raya giştî ya navneteweyî, ji ber talûkeya Cîhadiyan be jî, pêşanî dide Kurdan. Ev bandorê lê dike, ku ne pirsa Rojava tenê, lê bi awayekî tevahî pirsa Kurd bikeve rojeva hêzên navneteweyî.

**Tevgera Rojava bi hunerî xwe li polîtîka û dîplomasiya herêmê aniye.** Di têkiliyên bivênevê de cîran dixwazin ku me bikarbînin, lê divê em jî hîn bibin ku wan bikarbînin; ji xwe re dilsozî, lê ji wan re nedilsozî. Bi Şam, Bexda, Tehran an jî Enqerê re têkiliyên Rojava êdî diyardeyek e. Mirov dikare wan rexne bike û hişyariyê bidê wan, pêdivî bi lêkolîn û şirovekirina van têkiliyan heye, lê pêwîstiya wan êdî derveyî nîqaşê ye.

**Rojava êdî hevparekî rêzdar û xwedî giranî ye li ser dika neteweyî.** Herçiqasî di bin bandora PKKê de be jî, Rojava bi rêxistinîbûn, artêş, sazî, deng û serkeftinên xwe, lê bi êş û qîra xwe jî, edî di nav tevgera kurd de cihe xwe girtiye. Ji bilî yên din, ev tenê bi serê xwe serfirazî û tevkariyek e.

**Rojava xwedî siberojeke ronî ye.** Pêşeroja Sûriyê bi nezanîn û herwiha bi nişkegaviyan tijî ye. Herdu partiyên şer jî mafên Kurdan napejirînin. Ji wê yekê, bi pêşdemî xwendina pêşerojê gellekî zehmet e. Lê mirov dikare bi yeqînî bêje ku eger tevgera Rojava ne bi hişmendiya partîtî lê bi neteweyî tevbigere, taybetmendî û derfetên wê têrê dikin ku di qedera gelê Kurd û Sûriyê de roleke gellekî girîng bileyize.



# PKK û PDK mijûlî hevziyankirinê ne

**Rêbwar Kerîm Welî**

Ji destpêka bûyera Sûriyê ve, bala PDKê û PKKê bilez çû ser serdestiya Rojavayê Kurdistanê. Herduyan bi hukmê dirêjbûna dîroka xwe, di du qonaxên cuda de, didîtin ku divê ew biryarê li ser çarenivîsa vê navçeyê bidin.

PYDya ku PKKê ew çêkiriye, heta wê dema ku rejîma Sûriyê rêveberiya welat ji dest nedabû, ti çekdar û mîlîtanên wê nebûn. PKKê di destpêkê de li ber çavên PDKê hejmarek mezin ji gerîllayan derbasî nav bajarên Rojava kirin û rêxistina leşkerî ya bi navê YPGê (Yekîneyên Parastina Gel) pêkanî. Di Pûşbera sala 2011ê de, piştî nêzîkî 10 salan, rejîma Esed û PKKê aştî pêkanîn û dest bi arîkariya hev kirine. Vê jî wiha kir ku meydana Rojavayê Kurdistanê wek berê li ber çekdarên PKKê vebe.

PDK di destpêkê de bi ti awayî ne amade bû ku PYD bi fermî binase. Lewma hewlên derbarê pêkanîna encûmeneke kurdî ya bilind negihîştî bûn. Hingê PYD razî bû ku tenê endam be. Lê PDKê ev jî qebûl nekir. Şikestina PKKê di bereyên şerê Şemzînanê de paşvekişîneke bêdeng bi ser PKKê de anî. Hêdî hêdî jî hejmara hêzên PKKê bi navê YPG li Rojava pêkhatin û bêhtir bûn. Hewlên PDKê jî bo çekdarîkirina partiyên din ên Rojavayê Kurdistanê weke terazûkirinekê li beramber PKKê bi serî nebûn û PKKê bi tenê hukim xiste destê xwe.

Peymana Hewlêrê di Tîrmeha 2012ê de jî serketineke mezin bû ji bo PKKê û her xwe bêhtir mezin kir. PYDê ji 10 kursiyên Desteya Bilind a Kurdî 5 kursî birin. Serdestiya leşkerî ya wê jî bû defakto. Naveroka vê peymanê dîsa hêviya wê ji bo PDKê ew bû ku hejmarek hêz (Ku Kurdên rahênkirî yên Rojava bûn) bi navê partiyên din ên di nava Desteya Bilind de bibe nav bajarên Rojava, lê PKKê rê neda wan. Vêce piştî wê PDKê sînor li ser PKKê girt. Lewma piştre ku PKKê xwest hêza bêhtir bişîne, rêyeke din bikaranî.

PDK di wê nêrînê de ye ku navçeyên Rojava vala dibin, lewma çûnûhatina sînorî di navbera Rojava û Herêma Kurdistanê de sînordar kir. Bi vê jî nehişt ku PKK sînor ji bo armancên bazirganî bikarbîne û di heman demê de xwest ku hemû alîkariyên mirovî jî di rêya wê re bigihin Rojava. Çiqasî PDK li vir tundtir çûbe ser PKKê, ew jî li wî alî, li Rojava, li ser partiyên alîgirên PDKê vegeriya û ew vemirandin.

Li gor PDKê, PYD bi behaneya wê yekê ku ne diyar e gelo piştî ketina rejîma Esed çi bi Kurdan dibe, û di demekê de ku derfeteke zêrînî di dest Kurdên Rojavayê Kurdistanê de ye, takperistiyê dike û ne amade ye bereya rejîma Baasa Sûriyê berde. Li gor PKKê jî, PDK ajendeyên Tirkiyeyê li nav Sûriyê pêk tîne û helwêstên wê ne neteweyî ne.

Dema hewlên derbasbûna Artêşa Azad bo nav navçeyên kurdî yên Efrînê bûn, herwiha gihandina alîkariyên leşkerî yên Tirkiyeyê bo azadkirina Helebê, li ser destê PYDê şikestin û şer di nav wan de pêk hat, PYD ragihand ku grûpeke tundrew bi navê Cebhet el-Nusre kumkujî li hemberî 450 Kurdan kiriye. Ev jî weke karteke guşarê li dijî PDKê bikaranî û li vir jî partiyên rikeberî PDKê ew wek behane bidest xwe girtin.

**Çiqasî PDK li vir tundtir çûbe ser PKKê, ew jî li wî alî, li Rojava, li ser partiyên alîgirên PDKê vegeriya û ew vemirandin.**

PDKê zû platforma kongreya neteweyî bikaranî, bi pêkanîna komîteyekê, da ku rastiya bûyeran vekole. Bi vê jî PKKê, ku destpêkê pêşwaziya wê kir, piştre kete behaneyan û roja biryar hat dan ku ev şande here Rojava, PYDê bi hezaran kes li ser sînor civandin ku qaşo hatine û rê nadin şandeyê ku derbasî Rojava bibe. Bi vê jî çûna şandeya Rojava bo lêkolîna li ser komkujiyê bidawî hat. PDKê dubare reaksiyoneke bilez nîşan da û deriyê xwe li ber wan hezaran vekir ku qaşo li dijî şanda kongreya neteweyî li ser sînor bûn.

Bi her hawî qeder û çarenivîsa xelkên Rojavayê Kurdistanê ketiye navbera destarê berberiya navbera PDKê û PKKê û xuya nake ku wiha bi hêsanî û bêyî xwînrijandin bi dawî bibe. Eger sed carî jî şerê birakujî hatibe tehrîm û tecrîmkirin.

# Kurdên baş yên şoreşê



**Helîm Yûsiv**

Li cem her rejîmeke ku beşek ji welatê Kurdan di bin destê wê de ye, du Kurd hene. Kurdê baş ew e yê ku li gor daxwazên rejîmê tevdigere, hemwelatiyekî bêdeng e, ji bîrûbaweriyên giştî yên dewletê dernakeve, ji zimanê dewletê, ala wê, sembolên wê hez dike û wan wekî yên xwe dibîne. Ji ber vê dikare pileya herî bilind di dewletê de bidestbixîne û gava Kurdên “nebaş” dengê xwe derxînin, ji wan re dibêjin; “Vane Kurdên me yên welatperwer di nav me de cih digrin û di pileya herî jor de ne, pirsgirêka me bi Kurdan re tine ye, tenê bi hin rêxistinên radîkal û cudaxwaz re heye.” Gava şer jî dikin, dibêjin: “Şer ne li di jî Kurdan e, lê li dijî hin Kurdên ne baş e.”

Bi destpêkirina bûyerên şoreşa Sûriyê re hinek pîvanên nû derketin holê. Bûyer mîna erdhejeke mezin bi ser Sûriyê ve hatin û hemû alî û beşên civakê ber bi ezmûneke nû ve ajotin. Mîna gundekî ku demeke dirêj di nav tariyê de mabe û ji nişkê ve ronahî şewqa xwe bavêje ser her dever û quncikê. Wisa jî civaka kurd weku beşekî ji civaka Sûriyê neçar ma ku li hember vê erdheja mezin û vê ronahiya ku derûdor hemû berbiçav kiriye tiştekî bike û bixwaze nexwaze helwestekê nîşan bide. Di vê navberê re hêzeke nû li hember rejîmê derkete pêş û bi hemû reng û baskên xwe yên çekdarî û siyasî xwe wekî nûnerên şoreşa Sûriyê pêşkêş kirin. Her çendî ev ”nûner“ gellek perçe û alî û xwedî bîrûbaweriyên cihê bin, lê dîsa jî derbarê Kurdan û mijara wan de hema hema hemû xwedî yek helwest in. Wisa jî Kurdên baş li cem hemuyan xuyanî ne, Kurdên xerab û ne baş jî, ku li gor wan ajanên rejîmê ne, divê şer bi wan re bê kirin û ji holê bêne rakirin.

Di rêza başbûnê de, Kurd li cem van nûnerên şoreşa Sûriyê bi vî awayî ne. Kurdên herî baş ew in, ewên ku çek hilgirtine û li kêleka yekîneyên Artêşa Azad şerê rejîmê dikin û mil bi mil jî bi wan re şerê Kurdên nebaş û dûvikên rejîmê dikin û hewl didin ku hemû herêmên Sûriyê bidestbixînin, herêmên Kurdan jî di nav de. Di pileya duyem ya başbûnê de ew Kurd in, ewên ku cihê xwe di nav rêxistin û derûdorên rikberiya sûrî de girtine, bi esil Kurd in, lê mîna her hemwelatiyekî sûrî tevdigerin. Nexasim ewên ku cihê xwe di nav hevrêzên ciwanan de girtine û armanca wan rûxandina rejîmê û ne tiştekî din e. Eger daxwazên Kurdan hebin jî, wê piştî rûxandina rejîmê behsa wan bê kirin. Li pey van hin partiyên siyasî yên Kurdan tên, ew jî baş in, lê daxwazên wan yên neteweyî li pêş in. Ji ber ku baş in û çekên rejîmê hilnedane, mirov dikare wan tevlî nav rêzên rikberiyê bike. Bi vî awayî Kurdên nebaş hem tenê dimînin, hem jî derûdor li wan teng dibe.

**Kurdên herî baş ew in, ewên ku çek hilgirtine û li kêleka yekîneyên Artêşa Azad şerê rejîmê dikin û mil bi mil jî bi wan re şerê Kurdên nebaş û dûvikên rejîmê dikin.**

Kurdên nebaş ew in, ewên ku xwe bi çek kirine, ji bakurê Sûriyê re dibêjin Rojavayê Kurdistanê û dixwazin ev rewşa Sûriyê tê re derbas dibe ji bo xwe bikarbînin û xewnên xwe yên cudabûnê pêkbînin. Ji ber vê, divê hem Artêşa Azad, hem yekîneyên çekdarên îslamî û hem jî Kurdên baş, hemû bi hev re, şerê van Kurdên nebaş, nokerên rejîmê, bikin. Ji bo ku Kurdên baş vî şerî ji dil birêvebibin, divê di wê baweriyê de bin ku şaşitiyên van Kurdên nebaş û siyaseta wan ya xerab û zirarker bûne sedema vî şerî. Kurdên baş, ji ber ku zêde baş in, bawer kirine ku sedema şerê li herêmên Kurdan dibe, sûcê siyaseta çewt ya van Kurdên ne baş e. Nûnerên şoreşê bi zimanekî sergirtî ji Kurdan re dibêjin; hûn çiqasî di xizmeta me de bin, nêzîkî me bin, wekî me bin, ji xwe dûr bin, bêyî hêzên taybet, bêyî al û sembol û rengên cihê bin, ewqasî hûn baş in û xwediyên vê şoreşê ne. Hejmareke mezin ji Kurdan ketine pêşbaziya başbûnê. Yê çek di dest de û berê çeka xwe daye serê Kurdên nebaş, yê ku pênûs di dest de, bi şev û roj pênûsa xwe di çavên van Kurdên nebaş de radike û ji bilî wan ti dijminan li dora xwe nabîne. Wisa jî helkehelka wan e li pey trêna şoreşê bazdidin û dixwazin birayên wan, nûnerên şoreşê, bi destên wan bigirin û wan jî bi xwe re siwar bikin.

Di wê navberê re seriyên çend Kurdên nebaş li ber lingan herin jî, xem nake. Şoreş e û ew jî piştgiriya rejîmê dikin, di heqê wan de ye. Sûcê wan e, divê ew jî xwe baş bikin.

# Gelo Komkara Kurdî bi rê de ye?



**Wladimir van Wilgenburg**

Partiyên siyasî yên kurdî bo yekem car di navbera rojên 15 heta 17ê meha bê de li Hewlêrê dicivin. Lê eger proseya aştiyê li Tirkiyeyê neçe serî, dibe ku ew civîn ji nû ve bê paşxistin. Tew eger neyê paşxistin jî, nakokî beloq dibin û dibe ku bibe wek civînên bêyî encam ên Komkara Erebî.

Ramana girêdana kongreya neteweyî vedigere protokoleke di navbera PKKê û PDKê de, ku sala 1983yê li Şamê hate îmzekirin. Lê belê wê demê ew peyman nehate bicihkirin, ew jî ji ber cudahiya berjewendiyên siyasî û hebûna şer li deverê.

Ji ber ku niha proseya aştiyê li Tirkiyeyê heye, partiyên kurdî neditirsiyan ku ligel PKKê li ser heman maseyê rûnin. Ji ber ku dizanin PKK kiryarên çekdarî li Tirkiyeyê nake. Eger ew proseya aştiyê ji nû ve bi dawî bibe, êdî Tirkiye jî qebûl nake kongreya neteweyî bê girêdan. Niha Tirkiyeyê çavê xwe ji wan çalakiyan digire ku li Herêma Kurdistanê di berjewendiya PKKê de tên sazkirin, lê eger proseya aştiyê nebe, ji nû ve guvaş li ser hikûmeta Herêma Kurdistanê ji aliyê Tirkiyeyê ve destpêdikin.

Rojnameya Washington Post kongreyê wek nîşaneke erênî ji bo wan Kurdên ku li Tirkiye, Sûrî, Iraq û Îranê dijîn dibîne. Li wan welatan reftareke baş bi Kurdan re nehatiye kirin. Ew bi xwe jî, ji ber berjewendî, îdeolojî û siyaseta wan jî, eynî wek welatê wan, dabeş bûne.

Di encama vê yekê de jî partiyên kurdî bi giştî dabeş bûn li ser du blokên nêzîk ji Îranê yan ji Tirkiyeyê, ev jî rastiya cografîk a dabeşbûna sînorên Kurdistanê ferz kiriye. Pêwistiya PDKê bi hevpeymanekî li dijî Bexdayê heye û dixwaze bi rêya Tirkiyeyê petrolê jî bişîne derve. Partiyên kurdî yên din jî pêwistiya wan bi hevpeymanekî li dijî Tirkiyeyê û Barzanî heye, nemaze jî YNK û Goran ji ber erdnîgariya wan pêwistiya wan bi Îranê heye.

Herwiha, PDK û PKK xwedî siyasetên cihê ne li Sûriyê: PDK bêhtir ber bi Tirkiyeyê ve diçe, lê PKK bêhtir li dijî wê opozisyonê ye ku Tirkiye piştgiriya wê dike, lewma jî li hevpeymanekî li dijî Tirkiyeyê digere. YNK û Goran piştgiriya PKKê li Sûriyê dikin, lê Tirkiye di pirsa Sûriyê de piştgiriya PDKê dike.

Herwiha partiyên kurdî yên Îranê jî dabeş bûne. Tekane tişt jî ku pirraniya wan kom dike dijayetîkirina PJAKa girêdayî PKKê ye. Ev jî wiha dike ku guman ji wan bê kirin ku beşek bin ji “ajendeya tirkî.” Helbet PJAK piştgiriya proseya aştiyê li Tirkiyeyê dike û hêvîdar e eger li wir bi ser kevin, Îran bêhtir bê dorpêçkirin û bikeve jêr guvaşa partiyên kurdî.

**Ez nabêjim ku Ocalan bibe Mela Îdrîsê Bedlîsê yê nû û hemû Kurdan li dijî Îranê bike yek.**

Yanî her çiqasî partiyên siyasî bi hev re dicivin, lê cudahiyên wan ên îdeolojîk û siyasî hey dimînin. Lewma jî encamên kongreya neteweyî ya kurdî girêdayî ne bi wê proseya aştiyê ku di navbera PKKê û hikûmeta Tirkiyeyê de heye. Herwiha girêdayî cihê Îranê ne jî. Eger pirsa kurd li Sûriyê bi awayekî ji awayan çareser bû, herwiha eger heman tişt li Tirkiyeyê û navçeyên kurdî yên Iraqê jî rûda, wê demê derfet zêdetir dibe ji bo partiyên kurdî, da ku bikarin bêyî guvaşên derveyî xwe ji hevgirtinê re amade bikin.

Lê daxuyaniyên tund ên karbidestên dewleta tirk û PKKê derbarê proseya aştiyê, nîşan dide ku prose baş nayê îdarekirin.

Herwiha tevî dengoya hebûna peymanê di navbera PKK û PDK de li ser Sûriyê, lê hêj PKK li Sûriyê PDKê bi karên ne di rê de tometbar dike, PDK jî eynî tiştî derbarê PKKê de dibêje. Di encama vê yekê de jî çend alîgirên Barzanî li Sûriyê hatin girtin, ji ber ku tên tometbarkirin ku beşdarî şerê li dijî PKKê li Sûriyê bûne.

Lewma heta wê dema ku Kurd her di navbera Îran û Tirkiyeyê de dabeşbûyî bimînin, wek çawa berê jî di navbera Dewleta Sefewî û Osmanî de parçe bibûn, gumana min heye ku ti guherîn di rewşa Kurdan de rûbide. Lewma jî kongreya neteweyî her wekî komkara bêçalakî ya erebî lê tê.

Ez nabêjim ku Ocalan bibe Mela Îdrîsê Bedlîsê yê nû û hemû Kurdan li dijî Îranê bike yek, ev jî bi hevkariya Tirkiyeyê. Ev li pey peyama Newroza îsal a Ocalan tê çaverêkirin, lê guherîneke zêde jî nake.

## Mafê jiyana wan nîne û goristanên wan jî qedexe dikin

# Behayiyên Rojhilatê Kurdistanê tên koçberkirin

Fûad Heqîqî
*Hewlêr*

Bi sedema guşara desthilatdarên Îranê, şûnmayên kêmîneyên olî yên Kurdistanê dest bi koçkirina derveyî welêt dikin. Behayî yek ji wan kêmîneyên olî ne. Li Îranê nêzîkî 300 hezar peyrewkarên vê olê hene û beşê mezin ji wan li navçeyên Rojhilatê Kurdistanê niştecih in. Lê hejmara Behayiyên kurd bi dirustî nayê zanîn.

Li gor çalakvanê kurd û yek ji peyrewkarê vê olê, Cemal Haîrî, niha li Rojhilatê Kurdistanê zêdeyî 200 malbatên behayî li bajarên cure dijîn. Behayî piştî şoreşa îslamî ya Îranê, di sala 1979ê de, ji aliyê karbidestên Îranê ve beramberî guşarê hatin. Li gor hinek amarên ne piştrastkirî, heta niha 200 kes ji wan hatine darvekirin. Guşar li ser Behayiyan di van salên dawî de xurttir jî bûye û niha bi kêmanî 115 Behayî di zindanê de ne ku 70 kes ji wan li zindana Êvîn a Tehranê ne. Ew newêrin baweriya xwe ya rast derxînin û ji hemû mafên xwe yên siyasî û olî bêparkirî ne.

Cemal Haîrî, ku dibêje ew ji ber guşara îdareya Îtlaata Sineyê reviyaye û niha li Awisturyayê dijî, ji Rûdawê re got ku Behayî li navçeyên sunî yên Rojhilatê Kurdistanê pêrgî zexta xelkê nayên: “Rêzê jî li wan digirin. Lê li navçeyên şîiyan yên wekî Kirmaşanê ji ber sedema çavtengiya xelkê ev rewş bi awayekî din e."

Li gor gotina Cemal Haîrî, Îtlaat zextê li Behayiyan dike û astengiyan derbarê pêwendiyên ligel xelkên din jî pêk tîne. Herwiha ku zarokên wan diçine dibistanê jî, nabe ligel kesî axaftinê bikin. Îtlaat cîranên wan agahdar dikin ku serdana wan nekin: "Di destpêkê de serkarên komara îslamî guşar dikirin ku em ola xwe biguherin. Lê niha guşarê dikin ku em ji Îranê derkevin."


Bawermendên Behahiyan. Wêneyê jêrê: Mîrza Husên Elî Nûrî (Behaulla)



Cîgira nûnerê Civata Behayiyan li Yekîtiya Netewan, Sîmîn Fehendêj, dide zanîn ku sedema guşarên hikûmetê ya ser Behayiyan vedigere wextê pêxemberê wan. Di ola Îslamî de Mihemed pêxemberê dawî ye. Lê li gor Behayiyan "Behaulla" pêxemberê dawî ye. Ola Behayî ji aliyê Mîrza Husên Elî Nûrî (Behaulla) hate damezrandin. Behaulla sala 1863ê ev ola nû belav kir. Navenda cihana Behayiyan bajarê Heyfa yê li Îsraîlê ye. Li gor ola wan Behaulla pêxemberê Xwedê yê dawiyê ye. Ew di rêza pêxember Ibrahîm, Mûsa, Mesîh û Mihemed de ye.

Behayî di serdema şahê Îranê de azad bûn. Mafên wan ên sivîl parastî bûn. Lê belê wê demê jî kesayetiyên Şîiyan hewl didan ku hikûmet kêşeyan ji wan re pêk bîne. Behayî piştî şoreşa îslamî ya Îranê ji xwendina zanîngehan, ji pile û postên hikûmî û xizmeta di artêşê de bêpar hatin hiştin. Goristanên wan jî têk çûn û hemû şûnewarên wan ên olî hatin qedexekirin. Yasaya bingehîn a Îranê ola Behayî wekî kêmîneyeke olî nas nake. Encûmena Bilind a Şoreşa Rewşenbîrî ya Komara Îslamî di 25.02.1991ê de biryar da ku Behayî li dezgehên fermî kar nekin û nabe li zanîngehan jî bixwînin. Eger kesekî Behayî jî nasnameya xwe bi nihênî ragirtibe û di bin navê oleke din de çûbê zanîngehê jî, ew ji zanîngehê tê derxistin.

Li gor amarên sala 2006ê, 178 Behayiyan karîbûn bi rêbazên cuda biçin zanîngehên Îranê. Lê piştî ku ew hatin naskirin, 70 ji wan ji zanîngehê hatin derxistin. Sala 2007ê jî 30 xwendekarên behayî ji zanîngeha Peyam Newroz hatin derxistin. Herwiha sala 2011ê bi kêmasî 20 xwendekan hatin derxistin.

Vê dawiyê jî goristana Behayiyan li Sineyê bi biryara dadgehê têkçû. Li gor gotina Cemal Haîrî, li vê goristanê 40 gorên Behayiyan hebûn. Gorek jê ya dayika wî bi xwe bû. Li gor vê biryara dadgeha bajarê Sineyê, dewletê dest danî ser zeviyê goristanê jî. Hikûmeta Îranê di salên borî de gellek caran ji aliyê rêxistin û dezgehên mafên mirovan ve derbarê binpêkirina mafên kêmîneyên olî de hate şermezarkirin.

### 200 malbatên behayî li Rojhilatê Kurdistanê dijîn

Li gor çalakvanê kurd û peyrewkarê ola behayî, Cemal Haîrî, niha li Rojhilatê Kurdistanê zêdeyî 200 malbatên behayî li bajarên cuda dijîn: "Li Sine bi kêmanî 30 malbat hene. Li Qurwe 6 malbat, Li Kirmaşan bêhtirî 50 malbatî hene. Li Îlamê 2 yan 3 malbat. Li Serpêla Zehaw 5 malbat. Li Wirmiyê bêhtir ji 50 malbatî. Li Bokan 25 heta 30 malbatî. Li Tîkab nêzîkî 20 malbatî. Li Seqiz 5 malbat. Li Merîwan û herwiha li Miyanduwaw û bajarên din jî malbatên Behayî hene."

# Adetên şaş diranan wêran dikin

Gellek adet hene, bêyî ku em hay jê hebin, em belayeke mezin bi ser diranên xwe de tînin. Da ku diranên me baş bimînin, pêwîst e em xwe ji van adetên şaş biparêzin, ku pêk tên ji:

**Keritandina qeşayê:**

Siruştî û bêyi şekir e, ew jî wiha dike ku tu bîr bibe ku bêyî ziyan e. Lê keritandina tişên hişk û sar dibin sedema şikestina diranan. Dibe ku ev adet bibe sedema êşa demdirêj bo diranan jî. Hinek kes jî pênûsan dicûn, ew jî bandoreke xirab li ser diranan dike.

**Pêdana şîr beriya xewê:**

Ti deman ji bo destpêkirina parastina diranan ne zû ye. Pêdana memika şîr, da ku zarok pê raze, zarok bi kerizandina diranan nexweş dike.

**Quriçandina diranan di dema xewê de:**

Bi derbasbûna demê re, diranquriçîn dibe sedema şikestin, lawazbûn û êşa diranan. Herwiha dibe sedema êş û têkçûna valahiyên di navbera herdu argûşkên jor û jêr de. Hokara sereke ya quriçandinê nearamî û adeta nedirustiya xewê ye.

**Keritandina şekir û şîrînî**

Ziyana wan zêdetir dibe, dema ku tên keritandin, ji ber ku bi xurtî bi diranan ve vedibin. Bi vî awayî pêwendiyeke nedirust di navbera şekir û diranan de, heta çend demjimêran, pêk tê. Herwiha dibe rêxweşkereke girîng ji bo xirabûna diranan.

**Vexwerinên gazî**

Her qutiyek vexwarina gazî 11 kevçiyên şekirê çayê tê de ye, ji pêvî vê jî, tirşiya fosforî û leymûndiz tê de ye, ku dibin sedema nehiştina wî qaşilê hişk, ku xurtiya diran nixumandiye û bi mînayê diran naskirî ye. Ji ber van tirşiyan tê de, vexwarina vî celebî jî, ku bêyî şekir jî be, dibin sedema xirabûna diranan.

**Vekirina tiştan bi diranan**

Vekirina tiştên kanzan û plastîkî bi diranan, metirsiya şikestin û lawazbûna diranan pêk tîne. Bila herdem meqes û kilîta vekirina qutiyan hebe. Herwiha bila diran tenê karê xwe bikin, ku xwarin e.

**Xwarina kartolan**

Ne tenê şerbet û şîrînî diranan xirab dikin. Ew nîşaya di kartolan de jî vediguhere madeyeke tirş û ji diranan dixwe. Eger kartol di nav diranan de bimînin, metirsî li ser diranan bêhtir dibin.



# Fêkî rayan dişidîne

Rayên kesên ku rojane fêkî dixwin ji kesên din xurttir in. Bi xwarina fêkî ya asayî pêşiya qetandin û ferehbûna rayan tê girtin.

Li gor lêkolîneke zanyarên zanîngeha Karolinska ya Uppsala li Swêdê, kesên rojana 2 fêkiyên wekî sêv, hirmî, mûz û porteqalan bixwin, metirsiya qetandina rayên wan sedî 43 kêmtir dibe.

Zanyaran di çarçoveya vê lêkolîna xwe de 13 salan bandora fêkîxwarinê ya li ser zêdeyî 80 hezar kesên temenê wan 46-86 salî şopandin. Bi vî awayî diyar bû ku ji gellek hêlan ve tenduristiya kesên rojane fêkî dixwin, ji ya kesên din baştir e. Herwiha fêkî bandoreke erênî li tenduristiya cigarekêşan jî dike. Sedemên vê jî antîoksîdenên di nava fêkiyan de hatin nîşandan.



## Xaçepirs

**Çeperast: 1-** Nanê tenik, li ser sêlê çêdibe – Derman, reketkirin, rê û rêbaz. **2-** Terefdarî, rêzgirtin – Rakirin, veşartin. **3-** Kesên ji Nîjeryayê – Bijî, her bijî, bravo. **4-** Raste, erê, helbet (berepaş) – Bi Erebî "kêmnetewe, grûp" – Notayek muzîkê. **5-** Zixt, tirsandin – Bi Tirkî "tu". **6-** Zadê reş, zerzewatek ku jê nan çêdibe (berepaş) – Notayek muzîkê (berepaş) – Ji bo, ji ber, li ser. **7-** Aram, rehetî, kemilî. **8-** Rû bi rû, rasterast (berepaş) – Pêvok û gotina îdeolojîyekê. **9-** Werz, bax û bîstanê trî – Roja xutbê. **10-** Jan, eza, derd – Hezkirîyê Zînê Memê...., navekî zilaman – Kanî, bide min, bîne (berepaş).

**Serejêr: 1-** Jin di tenûrê de dipêjin, cûreyekî nan. **2-** Navekî jinan (berepaş) – Renqek, qer. **3-** Leqandin, destlêxistin (berepaş) – Rûnê hişk, tewaş, parçeyê rûn. **4-** Qehremanekî şewata sînema Amûdê (berepaş). **5-** Tiştên veşartî û negotî, gîzem – Welatê Cihû û Yahûdîyan. **6-** Navekî jinan, weke teyr (berepaş) – Du tîpên gotina "kar". **7-** Razî, dilxwazî (berepaş) - Kûçik, seg – Rojek. **8-** Çîçekek, navekî jinan. **9-** Sextekar, Beko Ewan, dolabgêr. **10-** Pirsek – Giranî, gîhayî, sergiranî, têgihiştinî (berepaş). **11-** Di artêşê de hêzek. **12-** Paşmayî, firêze, qirş û qalên ji ber zad mayî (berepaş). **13-** Lib, yekane (berepaş). **14-** Sebze û nebatek bi dendik û bêhn. **15-** Şêt e, aqilê xwe xwariye, bêaqil e (berepaş). **16-** Tûj, hat.

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | ■ | | | | | | | |
| 2 | | | | | | | | ■ | | | | | | | | ■ |
| 3 | | | | | | | | | | ■ | | | | | | |
| 4 | | | | | ■ | | | | | | | | | ■ | | |
| 5 | | | | | | | ■ | | | | | | | | | |
| 6 | | | ■ | | | ■ | | | | | | | | | | |
| 7 | | ■ | | | | | | | | | | | | | | |
| 8 | | | | | | | ■ | | | | | | | | | |
| 9 | | | | ■ | | ■ | | | ■ | | | | | | | |
| 10 | | | ■ | | | | | ■ | | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 212

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | K | O | L | E | D | A | R | Î | ■ | A | Ş | Û | R | Î | ■ | A |
| 2 | E | L | O | K | ■ | V | A | L | A | H | Î | ■ | O | L | A | N |
| 3 | R | Î | M | E | N | A | X | ■ | Ş | E | V | E | K | O | R | Î |
| 4 | B | ■ | E | R | Ê | K | I | R | I | N | ■ | D | A | N | Î | N |
| 5 | E | Z | ■ | E | R | O | S | ■ | K | G | | | | | | |
| 6 | Ş | E | W | T | ■ | R | T | L | ■ | Ê | | | | | | |
| 7 | ■ | B | E | ■ | E | ■ | I | ■ | D | R | | | | | | |
| 8 | D | A | L | E | Q | A | N | D | Î | ■ | | | | | | |
| 9 | A | N | A | L | ■ | L | ■ | R | A | S | | | | | | |
| 10 | M | Î | T | O | L | O | J | Î | ■ | O | | | | | | |



Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# LORÎN



Di 25.08.2013ê de Lorîn heşt sal dagirtin û kete sala nehan. Lorîn li Almanyayê, li bajarê Wuppertalê dijî. Li malê bi kurdî û li derve bi almanî diaxive. Herdu zimanan baş dizane û her şevê yan çîrokeke kurdî, yan jî çîrokeke zarokan bi almanî dixwîne yan guhdarî dike û radizê. Îsal diçe polê sêyem û her du salên derbasbûyî di dibistanê de serkeftî derbas kirin. Ji ber ku rojbûna wê dikeve dema tehtîla dibistanan, wê Lorîn du caran rojbûna xwe pîroz bike, carekê li malê bi malbata xwe re û carekê jî dema dibistan vebe bi hevalên xwe re.



Lorîn bi rojbûna xwe pirr kêfxweş e, ji ber ku hem mezin dibe û hem jî diyariyên li gor dilê wê jê re hatin.

# Lûnapark



Zelal û bavê xwe diçin Lûnaparkê û li ber tirena lûnaparkê disekinin. Zelal dixwaze li tirêna lûnaparkê siwar be. Bavê wê jê dipirse: Bi rastî jî tu dixwazî li vêya siwar bibî, tu jê natirsî?
Zelal li bavê xwe vedigerîne:
Na ez natirsim, ji bîr neke ez dehsalî me.
Bavê wê pê ewle nabe û dixwaze pê re lê siwar bibe, da ku Zelal netirse û jê re dibêje:
Herî başe ez jî bi te re lê siwar bibim.
Gava ku tirêna lûnapark pirr bilind dibe, bavê wê ditirse û ji tirsan hilma wî diçike, nikare biqîje jî. Zelal ji bavê xwe re dibêje: Bi rastî jî tu wêrekî, binêr herkes ji tirsan diqîje, lê ji te deng dernayê.

Delal Yumlu ev henek nivisand û ji me re şand

Belek dixwaze here goga xwe bîne, lê rê winda kiriye, nikare bibîne. Hûn dikarin arîkariya wê bikin?



Hejmaran bigihînin hev û wêne tamam bikin

